# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar:13 - 19-25 Tîrmeh 2014 www.bashaber.com




**Çiya: Populîzm nexweşiya têkçûna çandî ye**

Sayfa 16

## Deqên ser dil û rûyan

Ne hêsan e ku meriv di derheqê dîroka tattoyê de tiştekî bibêje. Ji ber ku dîroka wê digîje 10 hezar sal berê. Tattoyên ku li ser mûmyayên Misirê hatine neqiş-kirin, zelal bûye ku dîroka wan digihîje salên 2000'ên beriya Îsa. Ew deq bi boyaxa qamiş û çilo hatiye çêkirin. Dibe ku mirov di derheqê deqên yekem de gelek tiştan bibêje. Lê li Mezopotamya ya ku kurd û ereb bi deh hezaran sal in lê dijîn ev kevneşopî hebûye û hin jî heye.

Rewşên ku mirov li bedena xwe dineqîşîne li her dereke bi navên cûda tên binavkirin: Deq, daq, vesm, dovûn, dakî, daqî... Rûpel 13



### Pêvajo ya çareseriya li Bakûr

# Niftê li Hewlêrê ye



Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî, tevî şandeyek qerabalix hat serdana Enqere û bi Serokkomar Abdul-lah Gül û Serokwezîr Recep Tayyip Erdoğan re civiya. Serdana Barzanî hem di warê pêşwazîkirina Tirkiye de û hem jî di warê kaosa li Iraqê, ragihandinên di derbarê serxwebûnê de, mijara neftê û her wekî din di warê pêvajo ya çareseriya pirsgirêka kurd de jî xwedî taybetiyekê bû. Li gor analîst û rojnamegeran Barzanî rewşa Iraqê û nêzikahiya Malikî bi zelalî bi Enqere re parve kir.

Çavdêrên siyasî ku têkiliyên Hewlêr-Enqereyê dişopînin, diyar dikin ku her dû paytext êdî ber bi hevpari ya stratejîk ve diçin. Ew şîrikatî jî wê bandor li mesela ya serxwebûnê û çareseriya pêvajoyê bike. Ji ber ku di destpêka pêvajoyê de Nêçîrvan Barzanî çû Qendîlê û piştre jî hat Enqerê, tê gotin ku 'nifte ya İmralî'yê bi destê wî hatiye vekirin. Piştî ku paketa nû hat qebûlkirin niha jî çavlî rêye ku Hewlêr êdî ji bo çareseriyê rol a Oslo'yê bi cîh bîne. Di serdana Barzanî de rojev pêşeroja herêmê bû. Rûpel 04 - 5

## Yên Kurdistana serbixwe naxwazîn bê feraset in

Piştî hilweşandina Kurdis-tana Sor, di salên 1990'î de bi pêşengiya Wekîl Mûstafaev tevgerek nû ji bo avakirina Kurdistanê, li nava kurdên Qafqasya'yê derdikve holê. Ji ber ku Sovyet di nava belavbûnê de ye, bi piştgiriya wan hewildanên avaki-rina Kurdistana Sor derdike-vin. Serkeşê vê hewldanê Mûstafaev ku niha 76 salî ye û ji 1999'an virve ye li İtalya'yê dijî bu BasNûçe re axivî. Mûstafaev ku êdî kalemêrekî dîrokzan û bi şo-pandina siyaset û dîroka kurdan a niha mijûl e, dibejê bo parastina Kurdistana Sor ji Abdullah Oca-lan daxwaza tîmek gerîlla kiriye. Lê wan piştgirî nedaye. Ew dibeje wê demê hem Rûsya û hem jî Ermanistanê piştgiriya Kurdistanek serbixwe kiriye.



Rûpel 08-09

## Em ji bo Rojava her tim amade ne

Siyasetmedarê Rojavayî Abdulhekîm Beşar diyarkir ku heya niha PYD'ê nehiştiye ku partiyên din bi hêzên xwe piştgiriya Rojava bikin. Lê dîsa jî ew amade ne ji bo parastina Rojava'yê piştgiriya YPG'ê bikin.

Rûpel 10



## Dihok a rengîn

Dihok li Kurdistanê wek wargeh a rengîn ya herema Bahdînanê tê naskirin. Bajêr li gor pergala rêvebiriya Kurdistanê parêzgehe. Zaxo, Smêl, Şêxan, Batûfa û Amedî navçeyên Dihokê ne. Herwiha bi Dihokê ve girêdayî bi sedan gund û xopan jî hene.

Dihok li devera Badînan, bajarê herî mezin e. Şêniya bajêr nêzî 400 hezarî ye. Şêniya giştî ya parêzgehê jî nêzî 8 sed hezarî ye.

Bajêr ji taxên; Nizarkê, Ser-hildan, Mehabad, Beroşkê, Kanî Mehmedikê, Xebat, Birayetî, Azadî, Sêgirka, Kanî Xişmena, Şindoka, Geverkê, Malta Xwarû, Malta Jor, Aşitî, Şoreş û Şexikê taxên Dihokê pêk tê. Rûpel 02





# Dihoka rengîn

**Dihok di nav newaleke berfireh de hatiye avakirin. Sê aliyên bajêr ji çiyayên bilind pêk tên.**



**Welat BAZ**

Bajarê Dihokê li Başûrê Kurdistanê wek wargeh a rengîn ya herema Bahdînanê tê naskirin.

Dihok li gor pergala rêvebiriya Kurdistanê parêzgehe. Zaxo, Smêl, Şêxan, Batûfa û Amedî navçeyên Dihokê ne. Herwiha bi Dihokê ve girêdayî bi sedan gund û xopan jî hene.

Dihok li devera Badînan, bajarê herî mezin e. Şêniya nav bajar nêzî 400 hezarî ye. Şêniya giştî ya parêzgehê jî nêzî 800 hezarî ye.

Bajêr ji taxên; Nizarkê, Serhildan, Mehabad, Beroşkê, Kanî Mehmedikê, Xebat, Birayetî, Azadî, Sêgirka, Ronahî, Serbestî, Kanî Xişmena, Şindoka, Geverkê, Malta Xwarû, Malta Jor, Aşitî, Şoreş û Şexikê pêk tê. Dihok sînorên siyasî yê dewletên Sûrî, Tirkiye û Îraqê digine hevûdû. Bajêr bi qasî 60 kîlometre dûri sinorên siyasî yê Tirkiyeyê e.

Dihok ji başûr ve bi parêzgeha Mûsilê ve, ji rojava va bi parêzgeha Hewlerê, ji rojava bi parêzgeha Silêmanî û li bakûr jî bi Şirnex û Colemergê ve cîran e.

**Bajarê ol û baweriyan**

Beşek mezin ji Kurdên Dihokê musulmanên sunî ne. Kurdên musluman yên Dihokê ji mezheba sunî ne.

Li aliyê din herema Barzan û Zîbar ku li ser Dihokê ye, yek ji nawenda teriqa Neqşîbendîtî ye.

Li navçeya Şêxan pirranî kurdên êzdî dijîn. Herwiha nawenda olî ya êzdiyan jî li bajarokê Laleşê ye ku bi navçeya Şêxanê ve girêdayî ye.

Li parêzgeha Dihokê gelek malbatên asûrî û kildanî jî dijîn. Hijmara wan nêzî pênc ji sedî şêniya parezgehê ye. Ev herdû komên etnîkî jî Îsewî ne. Li dewleta federal ya Kurdistanê îsewiyên heremê jî di jiyana siyasî de jî cîh digrin. Di parlamen û hukûmeta Kurdistanê de nûner û wezîrên Asûrî û Keldanî hene û temsîla gelê xwe dikin.

Dihok ji mêj ve ji bo îsewiyan devereke olî bûye. Ji ber vê yekê li heremê gelek dêr û nawendên piroz hatine vekirin. Asûriyên heremê yek ji miletên pêşîn ku ola Mesîh hebandine. Herwiha asûrî 4 hezar salin li heremê dijîn û yek ji kêmnetewên kevnarê yên Kurdistan û Mezopotamya ne.

Yek ji keşeyên Dêra Beranî ya Dihokê, Conî Dawîd Hena behsa koka Asûriyên heremê dike. Îro jî gerek li nav bajêr gerek li navçe û gundên derdorê gelek dêr xizmeta olî ya bawermendan tînin cîh. Keşe Dawîd Hena di derbarê xebat û çalakiyên Îsewiyên heremê jî wiha dibêje.

**Erdnîgara rengîn**

Dihok di nav newaleke berfireh de hatiye avakirin. Sê aliyên bajêr ji çiyayên bilind pêk tên. Li bakûr Çiyayê Spî, li başûr Çiyayê Dehkan, li rojhelat jî Çiyayê Mamsîn Dihokê girtine nav kevanekî.

Rojavayê Dihokê jî ji alî Deşta Sêmêlê ve hatiye pêçan. Deşta Sêmelê ji bo çandina dexil, dan û dikak, axeke zêrîne.

Dihok di warê av û rûbar û çeman de jî dewlemend e. Ji xaka bajêr Çemên Dîjle, Hêzil, Xebûr, Avaşîn û Zêya Mezin derbasdibin. Herwiha ji nav bajêr jî dû çem diherikin.

Serekaniya Çemê Dihokê, ji bakûrê bajêr ji nêzî Gundê Xazyava dizê. Çemê Hişkerû jî, ji rojhelatê bajêr, li nêzî Gundê Berêbuharê dizê.

Li ser çemê Dihokê, sikreke avê hatiye çêkirin. Herdû çem jî, ku di nav bajêr de diherikin, baxçe û dehlên ku bi fêkiyên wek hinar, hilîk, mijmij, sêv, tireqî, tirî, hirmîka xemlandine av didin.

Ji şûnewarên kevnarê, ku li dewrûberê bajarin, xuya ye ku Dihok devereke kevnare ye. Ji ber ku herem li ser rêya bazirganiyê bûye, her tim girîngiya xwe parastiye. Navê bajêr jî bi vê taybetiyê ve girêdayî ye. Dihok dema ku navê xwe yê îroîn girtiye di bin desthilata Mîtaniyan de bûye. Mîtanî yek ji miletên Arî û bapîrên Kurdên îroînin.

Geliyê Dihokê, ji bo Mîtaniyan hem dergehek stratejîk, hem jî waregeha karwanan bûye. Bazirganên ku ji Asûr dihatin û derbasî nav gundên Mîtanî dibûn an jî bazirganên Mîtanî ku derbasî Asûr dibûn li vêderê bacê didan karmendên Dewleta Mîtanî.

Di dema şaristanî û Dewleta Mîtanî de, Axşîndo yê mîrê bajêr, li herema Girêbasê, bac ji karwan û bazirganan stendiye. Li gor rêbazên demê ji bo her barekî dû mist yanê dû hok bac hatiye vergirtin. Li gor cîwa-







nokên heremî navê bajêr jî, hingê ji nîspeta vê bacê yanê ji peyva 'dû hok' peydabûye.

**Wargeha bawermendên Bahdîn**

Geliyê Dihokê di dema Dewleta Medan de devera peristgehên pîroz bûye. Navê Bahdînan bixwe tê wateya 'kesen ku bi dînê pak îman tîne', yanê 'welatê bawermêndên Bahdîn.' Bahdîn navê ola Zerdeşt e.

Ji dema Sasaniyan ku hingê ola fermî Bahdîn bûye, heta sedsala 12an Dihok nawenda Mîrnîşîniya kurdên êzdî bûye. Heta sedsala 12an navê mîrnîşîna êzdîyan ya Dihokê, Mîrgeha Dasinyan bûye. Paytexta vê mîrnîşiniyê Dihok bûye ku hingê wek 'Dihoka Dasinya' hatiye binavkirin. Iro jî Dihok nawenda olî û siyasî ya êzdiya ye.

Piştî Medan, Dihok bi dorê di bin desthilatdariya Pers, Helen û Sasaniyan de maye. Di salên 640an de jî ji alî Artêşa Erebên Musluman ve tê dagirkirin. Paşê demeke dirêj Kurdistan dikeve bindestê desthilatdariya Ebasî, Eyûbî û Osmaniyan.

Di qirna navîn de Dihok û derdorê beşeke ji Mîrnîşîna Behdinan bû. Navenda vê Mîrnîşînê Bajarê Amêdiyê bû. Di sala 940'an de Mîrnîşîna Behdînan ji aliyê Hesen Begê Kurê Emîr Seyfedîn ve tê birêvebirin. Geliyê Dihokê û gundên derdorê di sala 1290'an de, ji destê mîrên kurd deredikeve û bi Musila xelîf ve tê girêdan.

Piştî ku Osmanî di çaryeka pêşîn ya sedsala 16'an de Kurdistanê dagir dikin, Dihok jî dikeve destê wan. Di serdema Osmaniyan de dehan car kurdên êzdî, musluman, asûrî û keldaniyên îsewî ji alî Osmaniyan ve hatine qirkirin.

Piştî ku Dewleta Osmanî di şerê yekem de têk çû, Dihok jî tê de Kurdistan ji alî İngîlîzan ve hat dagirkirin. Bajêr hingê ku bi Mûsilê ve girêdayî bû, wek gundekî mezin an jî navçeyekî bû. İngîlîzan heremê bi rêya komîserên siyasî birêvedibirin. Nunerê Dihokê yê İngîlîzan Ehmed Azawî û Sor Lîne bûn. Ew heta damezrandina Hukumeta Iraqê ya sala 1922'an man û paşê Fetah Begê ku kurd bû wek berpirsyarê Dihokê hat tayînkirin.

Herema Dihok di salên serhildana 1961'an de yek ji baregehên şoreşê bû. Piştî destpêka şer rejima Bexdayê dest bi şewitandina gundan kir. Bi vî awayî koçberiya berbi bajêr ve bilind û şêniya Dihokê mezin bû. Di sala 1969'an de, Dihok wek bajar hat tanzîmkirin.





## Dîroka bajêr

Bajarê Dihokê heta sala 1842'ên zayînê li ser Mîrnîşîna Amêdiyê bûye. Piştî hingê bi eyaleta Mûsilê ve hatiye girêdan. Dihok di sala 1873an de bûye navçe û sala 1969an jî wek parêzgeh hatiye tanzîmkirin.

Erdîma Dihoke ji bo jiyan û şaristaniyê destdar e. Herama ku bi çiyayên hênik, deştên geş û rûbarên avşîrîn xemilandî ji demên kevn ve bûye helîna însan. Li gor belge û rêçên kevnare diyare ku şaristaniya heremê digîje hezaran sal beriya niha.

Çiyayê Cûdî ku li bakûrê Dihokê ye, yek ji nawenda Gûtîyan bû. Gutiyên ku 3 hezar sal beriya zayine li heremê şaristaniyan avakirine, yek ji miletên bapîrê Kurdanin. Herwiha İlamî, Lûlû, Hûrî, Mîtanî û Qasîdî jî ku milet û şaristaniyên Arî û bapîrên kurda bûne, li Dihokê rêçên xwe hiştine.

Ji bilî şaristaniyên Arî, Asuriyan jî, ku berî zayînê di salên 1350an de ku dewleteke mezin avakiribûn, li Dihok û derdorê hukum ajotine û gelek rêç û rîş li pey xwe hiştine.

Çend ji amajeyên serkeftinên leşkerî û olî yên van şaristaniyan li ser zinarên Şikefta Helamata û herema Çarstûn ya beramberî Dihokê hatine neqişkirin. Di nav van rêçên dîrokî de sembolê yezdanên wek Mîhr, İştar, Hepa, Enlîl û Adîd jî hene. Beşekî ji van bermahiyên Dihokê niha di Muzexaneya Löwre ya Parîsê de, hin perçeyên din di Muzexaneya İngîltere ya Britîsch Muzyûmê û hin jî di Muzexaneya Almanya Berlîn Pergamayê de tên parastin.

Herwiha yek ji şahidên vê dîroka kevnare Girê Malta ye. Ev gir li Dihokê devereke kevnare ye û li wê derê ji dema Gûtî, Asûr û Mîtaniyan gelek rîş û rêç hîn jî mane. Malta di zimanên kevn de tê wateya 'deriyê derbasbûnê.' Li vêderê meqerekî leşkerî ku 3 hezar salî ye heye. Pişti ku kildaniyên heremê Dînê Mesîh pejirand, li ser vî girî dêrekî û ji bo mezinên ola xwe li ser gir goristanekî çêkirine.

Ji bilî van şûnewarên kevnare li bakûrê Dihokê Kela Firûne û li rojhilat jî Kela Şeda cîh digre ku ew jî dû bermahiyên girîng yên dîrokî ne.

Asûriyan, di salên 900an de û Babîliyan jî di salên 700an de êrişê welatê Kenanê, yanê Mîrnîşîna İsraîlê kiribûn û Cuhiyên vêderê dîl girtibûn. Cihûyên dîlgirtî li herêma Dihokê û Çiyayê Sipî û quntarê Zagrosan hatibûn cîhwarkirin. Cihûyên ku ji hingê ve li Kurdistanê mabûn, di salên 1940an de dest bi koça berbi İsraîlê kirin. İro li İsraîlê nêzî 100 hezar Cihûyên Dihok û derdorê dijîn.





# Nifte ya çareseriyê li Hewlêrê ye

Hewlêr û Enqere ber bi şirîkatiya stratejîk ve diçe

Li Iraqê piştî êrîşên DAIŞ'ê kaosa siyasî ya heyî kûr bû û rewşa Iraqê gihişte qonexeke krîtîk. Di demek wiha de Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî ku biryara referandûma serxwebûnê girtiye, ji bo li ser mijarên; referandûm, petrol, pêvajoya çareseriyê, DAIŞ û rewşa rehîneyên tirk yên di destê DAIŞ'ê de, hin hevdîtinan bike hate Tirkiyeyê. Çavdêrên siyasî ku têkiliyên Hewlêr-Enqereyê dişopînin, diyar dikin ku her dû paytext êdî ber bi şirîkatiya stratejîk ve diçin.

Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî, di çarçoveya hevdîtinên xwe de li Enqereyê bi Serokkomar Abdullah Gul û Serokwezîr Recep Tayyîp Erdogan re hate ba hev. Di şandeya Barzanî de jî, Alîkarê Serokwezîr Kubat Talabanî, Wezîrê Çavkaniyên Xwezayî Aştî Hawramî, Berdevkê Hikûmetê Sefîn Dizeyî, Wezîrê Maliyê Rêbaz Mihemed, Wezîrê Pêşmergeyan Mustafa Seyîd Kadîr, Berdevkê Wezîrê Pêşmergeyan Cabbar Yaver, Wezîrê Karê Hundirîn Kerîm Sîncarî û Serokê Dîwana Serokatiya Heremê Fuad Huseyîn cih girt.

Hate hînbûn ku di hevdîtinan de referandûma ji bo serxwebûnê, rewşa Iraqê ya siyasî, petrolên Iraq û Kerkûkê, pêvajoya çareseriyê, rehîneyên tirk yên di destê DAIŞ'ê de hatin nirxandin. Aliyê tirkan di hevdîtinê de destnîşan kir ku divê ji helwestên ku li Iraqê dê bibe sedema şerên nijadî, an jî mezhebî dûr bê sekinîn û piştgiriyê bidin parastina yekbûna Iraqê ya siyasî. Her wiha hate di mijara serxwebûne de aliyê tirkan xwest ku di vê mijarê de aliyê kurdan zêde lez nekin. Barzanî jî di hevdîtinê de derbirî ku ji ber helwesta Malîkî êdî Iraq nikare bibe wekî berê. Li hemberî vê derket holê ku aliyê tirkan herî dawiyê dê li hemberî serxwebûnê amedekariyan ji bike.

Piştî ku rafîneriyên petrolê li Iraqê ketin destê DAIŞ'ê êdî ne pêkane ku Iraq vegere rewşa berê. Di demek wiha de Barzanî di serdana xwe de bi taybetî boneya ku beriya aşkerakirina referandûmê ji bo serxwebûnê piştgriyê bixwaze hatiye Tirkiyeyê.

Li gor agahiyên ku ji kulîsan hatine girtin Enqereyê ji Barzanî re gotiye ku "Hêj tablo gelek nediyar e, divê li welat rê li ber şerê nijadî an jî mezhebî neyê vekirin." Li gel vê Tirkiyeyê diyar kiriye ku piştî demekê ew ê li hemberî îlankirina serxwebûnê amade bibin. Hat ragihandin ku, Barzanî jî di hevdîtinê de li ser vê mijarê bilêv kiriye "Ew tu demê nabin piştgirê aliyekê. Lê tu demê jî ew destûr nadin şer têkeve herema me."

### Divê kurd bibin xwedî rola yekbûnê

Hate diyarkirin ku Barzanî gotiye ku heta niha di vê mijarê de çi ketiye ser milê wan kirine, lê ji ber kirinên Malîkî hemû alternatîfên bi taybet di destê kurdan û yên aliyê din de qediyane. Hate gotin ku di berdewamê de Barzanî daxuyandiye ku Malîkî rola kurdan ya yekbûyînê nedîtiye û her tim Herema Kurdistanê kiriye hedef. Hate zanîn ku Barzanî di hevdîtinê de gotiye ku referandûn ji bo kurdan êdî jênevegere û li hemberî vê aliyê din jî gotiye ku divê di pêvajoya siyasî ya Iraqê de kurd bibin xwedî rolek yekbûyî. Barzanî jî diyar kiriye ku ew êdî naxwazin piştgirî bidin Malîkî ku edî bûye wekî dîktatoreki. Di hevdîtina Mesûd Barzanî û Erdogan de jî hate derbirîn ku rewşa li Iraqê neçarê êdî wekî beriya "Misulê" û piştî "Misulê" bê xwendin, ne pêkane êdî Iraq vegere beriya 2013'an û kurd jî sunî jî êdî li hemberî pêkutiyan serî natewînin. Hate diyar kirin ku êdî mijara Misulê bûye destpêkek nû û Malîkî bi hewladanên xwe krîza li heremê kûr kiriye û hemû dengeyên heremê têk birine. Hevdîtina Barzanî û Erdogan saetek û nîv berdewam kir. Alîkarê Serokwezîr Kubat Talabanî, Wezîrê Çavkaniyên Xwezayî Aştî Hawramî, Berdevkê Hikûmetê Sefîn Dizeyî û Wezîrê Maliyê Rêbaz Mihemed jî tevli hevdîtinê bûn.

### Piştgiriya pêvajoya çeraseriyê didome

Barzanî ji rayedarên tirk re ragihand ku zagona çarçove ya ji 6 xalan pêktê û ji bo çareserkirina pirsgirêka kurd hatiye derxistin gelek girîng dibînin û ew amadene ku ji bo alîkariyê çi bikeve ser milê wan bike. Li bendê ye ku di qonaxa duyemîn ya pêvajoyê de endamên PKK'ê derkevin derveyî sînor û di mijara da ku ev ê derkevin derveyî sînor wê li ku bimînin de Barzanî û Erdogan li ser hin formûlan guftugo kirine. Hate hînbûn ku rayedarên Herema Kurdistanê dê ji bo vê xebatek bidin destpêkirin. Tê texmînkirin ku endamên PKK'ê yên dê derbasî Herema Kurdistanê bibin li Wargeha Mexmûrê bên bicihkirin.

### Di mijara petrolê de rêyên nû

Mijarek herî girîng ya hevdîtinan jî bê guman mijara petrolên Kurdistan û Iraqê bû. Ji serê salê pê ve petrola Kurdistanê ji ser xeta boriyan ya petrolê Ceyhan-Yumurtalikê sewqî Tirkiyeyê dihate kirin. Ji 12 hezîranê şun ve jî petrola Kerkûkê jî bi rê hate şandin. Tê diyarkirin ku xeta petrolê da ku ji bo petrolên Kerkûkê hatiye amadekirin wê heta mehekî bi dawî bibe û di vê mijarê de Hewlêr li benda erêkirina Enqereyê ye.

Di dema ku hevdîtin didomîn de Wezîrê Enerjî û Çavkaniyê Xwezayî yê Tirkiyeyê Taner Yildi, daxuyaniya "Êdî petrol dest veguhestiye" kiribû. Ev daxuyanî wekî erêkirina Tirkiyeyê ya ji bo vê mijarê hate şîrovekirin. Yildiz her wiha nûçeyên wekî "Barzanî ji bo pereyê petrolê hatiye" jî derewand û diyar kir ku Barzanî ji bo pereyê petrolê nehatiye.

### Mijarên tirkmenan û rewşa rehîneyan

Mijara rehîneyên tirk yên di destê DAIŞ'ê de jî di hevdîtanan de hate nirxandin. Li gor îdîayan, Tirkiye û Kurdistan di vê mijarê de wê bi hevre bixebitin û heta tê gotin di rêjên pêş de wê ji bo vê operasyonek hevpar jî bê lidarxistin. Hate gotin ku rewşa tirkmenên li heremê jî di hevdîtinê de hatiye rojevê û hikûmeta Tirk xwestiye ku Barzanî tirkmenan biparêze.

Piştî hevdîtinan rayedarên tirk yekem car xwarina fitarê dan Barzanî û ew jî wekî pêşketina têkilayan hate şîrovekirin.

# Rola Oslo'yê wê Hewlêr bilîze

Nivîskarê rojnameya Yeni Şafak'ê Çetin Çetiner destnîşan kir ku serdana dawî ya Barzanî ji serdanên din girîngtir e. Çetiner got ku; Barzanî ji Enqereyê re derbarê serxwebûnê de tiştê zelal gotiye, bi rûdanên nû yê li Iraqê û bi rêya referandûmê destê xwe bi hêz bike û li Rojhilata Navîn dê bibe aktorekî bi hêz. Hukumeta Kurdistanê çawa ku di serî de aktorekê girîngbû niha pêve jî dê bibe hêla sêyemîn û welatê garantor. Di heman demê de wê bibe welatê ku vî karî bi rêve dibe. Serdana birêz Barzanî ya Enqereyê di çarçoveya serdanên wî yên Ewrûpa'yê de hatibû pilankirin. Barzanî wê demê li Ewrûpayê di derbarê serxwebûnê de nêrîn digirt in. Herî dawî dê bihata vir lê mijara DAİŞ'ê her tişt devrû kir û serdan ma îro. Piştî 11'ê Hezîranê ku DAİŞ ket Misûlê, rewşa Iraqê ew serdnan watedartir kir. Barzanî li Enqere carek din destnîşan kir ku bi Malîkî re nabe. Ev tê wateya serxwebûnê. Li hember kurdan Malîki dîktator e û her tim gefan dixwe û zêde naxwazin tahamûlî vê bikin. Gumana kurdan rûdanên piştî çûyîna Malîkî ne. Naxwazin Enfalek nû bijîn û ji ber vê jî mijara serxwebûnê herdem bi lêv dikin. Barzanî vê mijarê bi awayekî teqez bi Enqere re perve kir. Tirkiye ji roja ku boriyên neftê sazkir vir ve dizanibû ku rewş dê were vir û wan bi xwe jî alîkarî kir. Nêrîna berê ya dewletê guherî. Barzanî xwesteka xwe ya referandûmê bi zelalî ji Enqere re perve kir. Li gor texmîna min di Mijdar-Berfanbarê de xebatên serxwebûnê dê bêne kirin. Belkî kurd di heman rojê de serxwebûnê ranegihînin lê wê vê qertê di destê xwe de bigrin. Di vê rewşê de hesasiyeta Enqerê ya Hewlêrê jî ew e ku naxwazin bibin kesên ku Iraqê parçe bikin. Belkî şansekî din bidin Bexda'yê lê ve herî zêde salekê serxwebûnê paşve bixe."



**Mifteya Imrali'yê Nêçîrvan Barzanî vekir**

Çetin destnîşan kir ku Hukumeta Kurdistanê di serî de perçeyek ji pêvajoya çareseriyê ye û hevdîtinên bi Imrali'yê re bi saya Nêçîrvan Barzanî dest pê kirine. Çetîn: "Di serîde gotinên MİT û Imrali'yê hebûn lê di rastiyê de destpêkirina pêvajoya çareseriyê bi serdanên Nêçîrvan Barzanî yên li gel Qendîl û Enqerê dest pê kir. Em bi saya pêbaweriya wî ya ku daye gelê kurd û tirk ginêştin vê qonaxê. Raya giştî vê nabîne. Herêma Kurdistanê di serî de rolekî çalak girtiye ser xwe û wek hêla sêyemîn tevlî hevdîtina dibe. Bi derbasbûna pakêtê em niha di pêvajoyeke nû de ne. Di navbera Qendîl û Enqerê de pêwendiyek tune lê Hewlêr navbeynkariyê dike. Bawerim Muşteşariya Giştî ya Ewlekariyê wê di demek nêzik de li Hewlêrê şaxekê veke û ew der dê bibe navenda hevdîtinan. Derbarê qampa Maxmûrê de jî hin tişt wê bêne sazkirin. Dema paşvekişînê detpêkir ew der dibe navendek girîng. Pêvajoya çareseriyê dê bigîje asteke berbiçav. Oslo ya nû Hewlêr e. Dê ne Ingîltere be û ne jî welatekî din be. Ev rol Hukumeta Kurdistanê girtiye ser xwe. Bi şênberbûna pêvajoyê de bandora Hukumeta Kurdistanê jî zêdetir dibe. Ji hêla din, Kurdistaneke ku qerta serxwebûnê di destê xwe de digre derdikeve holê. Ev mijar bi giştî li Enqere hatin axaftin û bi hev bawerî hat girtin. Bê wê jî konferansa neteweyî ku nehatibû organîzekirin di van rojan de dê bikeve rojevê. Barzanî dê tevî qerta serxwebûnê vê konferansê li darxe.

# Têkilî digîjîn cihekî aram



Nivîskarê Rojnameya Habertürk jî ziyareta Barzanî bo BasNûçe nirxand. Özel wiha axivî, "Çûn hatina bi sixletî tê wateya ku têkiliyên di navbera herdû aliyan de gihêştinê cihekî aram. Dibe ku Tirkiye ji bo serxwebûna Kurdistanê tam negihêştibe fikreke 'erêkirin' lê di warê polîtîkayên eborî û enerjiyê de Kurdistanê wek cihekî otonom qebûl dike. DAIŞ û rewşa Misûlê ji bo herdû aliyan talûkeyeke. Kerkûk jî bo Tirkiye girîng e. Lê herdû alî jî ji Rojava xwedî dernakevin. Ev ecêbiyeke. Ji ber ku li wir jî DAIŞ bi kurdan re şer dike. Rola Barzanî ya di çarçoveya pêvajoya çareseriyê dehelbet girîng e lê bandora wî bêhtir li ser zemînek mufazakar dimeşe. Ji bo çareseriyê rola Kurdistanê girîng û rolekî aktîf e. Barzanî bi Enqere re li ser van hemû mijaran axivî û bi rêya neftê jî têkiliyên xwe anîn asteke balkêş."

# Ev serdan bo pêvajoyê girîng e

Nivîskarê Radikalê Fehim Taştekin jî diyarkir ku hevdîtina Barzanî ya Enqere bo pêvajoya çareseriyê xwedî girîngiyekê ye. Taştekin wiha got, "Tirkiye ne li Sûriye ne jî Iraqê ne di mercîn ku DAIŞ'ê bide hember xwe de ye. Ez ne bawer im ku Tirkiye li hemberî DAIŞ'ê di nava operasyon an jî tevdanekê de cîh bigire. Barzanî ji bo parastina cihên bidestxistine li hin deveran bi DAIŞ'ê re şer dike. Li bi tevahî em nikarin bibêjin ku ew şer e. Di vir de pêwistiya kut irk û kurd bi hev re operasyonekê bidin destpêkirin e. Ku werin ser mijara pêvajoyê; Tirkiye pişniyara ku hemû endamên rêxistinê yên li çiyê û yên li qampan di nava civakê de bi cî bike dike. Ji bo vê hin yasa derxistin. Heke ku ev yasa di demek kin de di pratîkê de beramberiya xwe bibînin, pêwistî helbet bi Barzanî heye. Di bi Barzanî ve koordînasyonek bê avakirin. Ev mijar di hevdîtinan de helbet hatin rojevê. Tirkiye di hewildana ku ji bo çareseriya pirsgirêka kurd gavên nû biavêje de ye. Berî yasaya poşmaniyê derxistin lê wê têrî nekir. Pêşniyareke ku gerîla jî bê û din ava civakê de cihê bigire û firehtir tê kirin. Heke ku ew pêşniyar bi ciddiyet li ber çavan bê girtin, pêwîstiyek mezin bi rola Barzanî heye. Ew qam bi hêsanî nayên valakirin. Heke bên valakirin vêcarê hin hêzên din dê dagirin. Ji ber vê pêwistî bi Barzanî heye.



# Nêrînên çapemeniya Kurdistanê

Çapemeniya Kurdistanê ziyarete Barzanî ya li gel Enqere bi rengê, "Ji bo referandûma serxwebûnê hîn zû ye lê belê Barzanî wek serokê dewletekê pêxwazî kir." nirxand. Li gor medya ya Kurdistanê, tevî pêşveçûna DAIŞ'ê û krîza ku Iraq di nav de ye ew ziyaret pêk hatiye û li gel vê nîqaşên li ser referandûma bo serxwebûnê jî gêştir bûne û pê re jî ziyareta Barzanî ya Enqere di asteke herî bilind de pêk hatiye.

Di nûçeyên ku hatin weşandin de ew raman derket holê, "Di ziyareta Barzanî de derket holê ku êdî li Iraqê guherîn li devê derî ye û ev mecbûriyeteke, divê zihniyeta ku serdariyê li Iraqê dike neçar e ku bê guherîn." Herwekîdin di nûçeyan de di derbarê serxwebûnê de jî tê nivîsîn ku Barzanî gotina; "Bi sedema ku em wek herêmê ji pêkhatinên heyî zirarê nebinin, em hewildidin ku sîstema xwe avakin û li ser piyên xwe bisekinin."

Hişyariya Abdullah Gül ya di derbarê pêşeroja Iraqê, û damezrandina hukumeta nû de ku ji bo Barzanî kiribû jî di çapemeniya Kurdistanê de bi berfirehî hat nirxandin. Di derbarê hevdîtina Barzanî û Erdoğan de jî ev tişt hatin nivîsandin û weşandin, "Di hevdîtina bi Erdoğan re de istikrara Iraqê, tesîskirina ewlehiyê, lezdayîna pêşeroja siyasî û bi hêzên din re meşandina polîtîkayeke aştiyane wek pêwistiyekê hat bi navkirin. Erdoğan ji bo serxwebûnê got hîn zû ye. ."

**Dema ku serxwebûn çêbû dê ala me cî bigire**

Wezîrê pêşmergeyan Cebar Yawer ku ew jî di nava şandeya Barzanî de cîh digirt jî di derbarê ziyareta Enqere de hin agahî bi çapemeniyê re parvekirin. Yawer wiha got, "Di hevdîtinan de meseleya referandûmê nehat rojevê. Ji ber ku Kurdistan hîn serixwe nebûye ala Kurdistanê di civînan de cîh negirt. Dema ku Kurdistan serbixwe bû helbet wê ala me jî li wir bê bi cîhkirin. Kontrola Pêşmerge ya li Kerkûk û hin deverên Misûlê ji aliyê Enqere ve bi kêfxweşî hat pêşwazîkirin.

# Sûreke bi tilîlî





Necibe KIRMIZIGUL

Ma hûmara verêne de behsê kênavînayîş, kênawaştiş û qelinî kerdbî. Nika zî ma do behsê veyveyî bikê.

**Veyve**

Qelin birnîya tepîya kişta lajekî do veyvera xo çi wext berê se, wextê xo bellî kenê. Goreyê ê wextî, her di kiştî hazirîya xo kenê. Eke hazirîye bî temam, roja veyveyî dîyar bena. Verê veyveyî hefteyê, milet dawetê veyveyî beno. Kişta zamayî nê dawetî keno. Mileto ke nêzdî yo, înan rê xelatî vila benê. Nê xelatî top ê, yew tope: 3.5-4 metreyî qumaş o. Miletê bînî rê zî qertî vila benê.

Edetê veyveyî zî tayên vurîyayê. Verî ra hetanî nika veyveyî zafane keye de bîyêne. La nê demanê peyênan de veyveyî salonan de zî benê. Veyveyê ke keye de benê zafane roja yewşeme û panşeme benê. La bolê ci roja yewşeme benê. Çike a roje tatîl o. Eke veyve roja yewşeme bo se, verê coy roja îne şan ra dest pêkeno. Roja îne behdê êreyî sûreke (beyraqe) denişêna. Sûreke bi tilîlî ya banî ser o cayêndo berz a denişêna. Sûreke nîşanê destpêkerdişê veyveyî yo. Yanî yew banî ser o sûreke biaso se, bizanê ke uca de veyve beno. Roja îneyî şan ra vengane dest pêkeno. Umûmî teyp cenenê. La verî bolên niqara cenayê. Nika herinda niqara çalxî girewto. Roja îneyî şan ra hetanî roja yewşeme şewra govende û kaykerdiş dewam keno. Banê verênî hema bihewşî bî coy ra govende hewş de geyrayê. Ê ke hewşê ci çin bî, yan hewşê emrîyanan de kerdê yan zî kuçe de. Nika banê erdî bîyê tayên bolê ci bîye daîreyî coy ra veyveyê ke keye de benê umûmî govende kuça de gêrîyena.

Berbûrîyê veyveyî zafane roja şemeyî yenê veyve. Roja şemeyî behdê dihîrê şinê heneyî ser. Goreyê verî, eke veyve sûke mîyan de bîya, behdê dihîrî veyve heme şîyê heneyî ser. Eke niqara cenîyêya se, ray ra bi niqara ya şîyê. Eke veyve dewe de yan zî cayêndo dûrî de bîyayê, o wext hîrê-çar cinî şan de şîyê hene û a şewe uca mendê şewra veyve de ameyê.

Bi roj behdê dihîrê şîyê hene, destê veyve hene kerdê. Wexto ke şîyne hene veyvekêna veyvere nanê tepsîye ser û sûreke ancenê ci û waya zamayî tepsî nana xo sereyî ser, o hesab a ray ra şînê keyeyê veyvere. Qe veyve dewe de bo qe sûke mîyan de bo, veyvekêna ci roja heneyî şina. Sûreke erzênê veyve ser. Umûmî hene de veyve veyvekênî dana xo ra, ê ke sewbîna çinayan danê xo ra zî estê. Verî veyve teştî ser o dayê roniştene. Teştî bin de zî meqes, şane, lîlik, çila yan zî mûme bîyê. Teştî ser o balişna (yastixe) ronayê û veyve ser o roniştê. La nika kes nê edetî nîyano ca. Veyve wextê heneyî sandalyeyî ser o roşena. Dima zî hetanî altun ci dest nêkerê veyvere destê xo anêkena. Altunê destî çarîg, nîmzînet yan zî zînet o. Cinîyê nêzdîyê zamayî ra yewe altun kena veyve dest û veyve destê xo akena hene kenê ci dest. No hene wuşk o. Veyve hene kerd tepîya, cihêzê veyverê xo de anê keyeyî zamayî. La cihêz hema nêdîyeno. Waya veyvere sandiqa veyve ser o roşena û vana “Heqê Sandiqe” bidê.

> **Roja îne behdê êreyî sûreke (beyraqe) denişêna. Sûreke bi tilîlî ya banî ser o cayêndo berz a denişêna. Sûreke nîşanê destpêkerdişê veyveyî yo. Yanî yew banî s er o sûreke biaso se, bizanê ke uca de veyve beno. Roja îneyî şan ra vengane dest pêkeno.**

Hetanî pere nêdê cihêz nêdîyeno. Pere dayî tepîya cihêzê veyvere vejenê û anê keyeyê zamayî. Di-hîrê cinî zî cihêzî de yenê keyeyê zamayî, ê cihêzî danê duzanê. Şanê ci de kişta veyvere veng danê çorşmeyê xo, keyeyê xo de hene kenê. A şewe keyeyê zamayî de zî hene alawêno. Xora veyve hetanî nîmeyê şewe dewam keno. Tayên zamayî zî destanê xo kenê hene la bolê ci nêkenê.

Roja yewşemeyî şewra mileto ke ameyo veyve heme arêbeno. Bolê ci ereba tepîşenê. O ke şoşmanê zamayî yo, o zî erebaya veyvere beno xemilneno. Bi konvoyê ereban a şinê veyvere anê. La hema veyvere nêdanê. Fina waya veyvere odaya ke veyve tede ya, peyê kêberê a oda de vindena “Heqê Kêberî; Paşqapî” vazena. Paşqapî dêya tepîya veyve vejenê. Veyve hewna keye ra nêvijîya, biraye ci mundîya sûre mîyaneyê ci ya girêdano. Dima lew nana may û pîyê xo dest a, tepîya keye ra vejenê. Ereban a sûke mîyan ra veyve çarnenê tepîya anê keye. Yena keyeyî ver se, veyve hema ereba ra nîna cêr vistewranê xo ra xelate wazena. Vistewranê ci ra yew yeno ci rê çîyên keno xelat û hewna veyve ereba ra yena war. Wexto ke veyve yena hewşê keyeyî, cinîyên banî ser a şeker çekena veyve ser. Bê şekerî riz, xele, mercu, sole benê. Qeçî şeker arêdanê. Semedê

eştişê çîyan zî, vanê keyeyê veyve û zamayî bibereket bo.

Veyve arde tepîya na fine şinê çinayê zamayî pêradanê. Zama zî şino yew keyeyê şinasî. Fina çinayê zamayî zî nanê yew tepsî ser û sûreke ancenê ser û waya zamayî nana xo sereyî ser, milet a veyveyî ya şinê çinayî zamayî danê pira. Hetanî çina dîyeno zamayî ra milet zî kay keno. Dima zamayî zî anê keye. Û vengane qedîno.

Şewra hetanî veyve yena keye, o mabên de şamîya veyveyî virazêna. Veyve ard tepîya dest bi wendişê mewlîdî kenê. Mewlîd qedîya tepîya şeker, biskuvît, şerbet vila kenê. Dima zî şamîya veyveyî vila bena. Cinîyan ra hetanî qeçan heme nanê veyveyî wenê.Edetê veyveyî de şamîdayîş tewr verî ra esto. Nika zî dewam keno. Şamîya veyveyî verî zimistanî tirşê fasulîyanê wuşkan û riz bî. La qewirme kerdê rizî ser. Hamnanî zî tirşê fasulîyanê kihuyan û tirşê simaqî kerdê. La nika şamî vurîye. Nika zafane qewirme û riz o. Ê ke nêşenê qewirme virazê ê zî bol ê.

Nika nê qaydeyan ra tayê vurîyayê. Hene şîyayîş sey verî nîyo. Umûmî şewe şinê veyve hene kenê. Nika zama zî şino hene û sey verî milet heme hene nêşino. Cihêzê veyvere roja heneyî nêanê. Verê coy anê keyeyê zamayî. La dewan de hewna dewam keno. Çinayê zamayî piradayiş zî hewadîyayo. Çike nika zama çinayanê xo dano xo ra û şino veyvere ano. Nê qaydeyî qe veyvanê keye de qe ê salonan de vurîyayê. La "Heqê Kêberî" û "Heqê Sandiqe" ê ke qelin gênê bole ci qelin de hesibnenê. Umûmî ê wendayan de "Heqê Kêberî" û "Heqê Sandiqe" nêgêrîyeno. Veyveyê ke salonan de benê, xora şewên de benê. Di rojî veyve dewam nêkeno. La nanê veyveyî dîyeno. Eke roja yewşemeyî şan de veyve yo se, a roje dihîrê zî nanê veyveyî dîyeno. Veyveyê salonan her roje zî benê, sey verî îlla do yan roja yewşemeyî yan zî roja panşemeyî bibo şert nîyo. Yanî veyveyê salonan de qaydeyê ke mi cor de va, nînê ca. Û vera-vera milet veyveyê salonan tercîh keno. Veyveyê salonan hîna bêzehmet ê, coy ra kes zehmetîya veyveyê keyeyî nêanceno. Xora edet û toreyê veyveyê salonan modern ê.

**Eke edet û toreyî vinî bê, kultur zî beno vinî, eke kultur vinî bo, ziwan zî beno vinî. Mesela, hene de verî cinîyanê pîlan û kênayann bi zazakî yan zî kurmancî hevalî (manî) vatê. La nika kes qet manî nêvano, vajê zî bi tirkî vanê.**

### Netîce

Vera-vera zemanî mîyan de bol edetî hewadîyenê yan zî vurîyenê. No bedilîyayîş bi mi ke çîyêndo negatîf o. La nînan ra qelin hewadîyo se negatîf nîyo. Tena hewadîyayîşê qelinî pozîtîf o la o zî hewanêdîyeno. Bê qelinî edetê bînî vinî bê se, bi mi ke negatîf o. Eke edet û toreyî vinî bê, kultur zî beno vinî, eke kultur vinî bo, ziwan zî beno vinî. Mesela, hene de verî cinîyanê pîlan û kênayann bi zazakî yan zî kurmancî hevalî (manî) vatê. La nika kes qet manî nêvano, vajê zî bi tirkî vanê. La fina zî dewê ke sûkan ra dûrî yê, hend nînê û nêşnê sûke, înan de hewna edetî hîna dewam kenê. La îletîşim çend beno lez hend zî edetî benê vinî. Çike tim cuya sûkan yanî edetê tirkan miletê ma rê weş yenê. Eke yew veyveyê xo salon de bikero, o beno modern. Merdimo modern zî cayên ra zî zanaye aseno. Senî ke tayê însanê ma di çekuyî tirkî qisey kenê, vanê ma zanaye yê, eynî edet û toreyê zî winî yê. Eke veyveyê yew kênaya dewije salon de bibo û dans bikera, a do ey a paye bigîra. Mesela, wendeyî hîna vera pey şinê, ageyrenê edetanê xo ser.

La ê ke dewan de yan zî haydarê muhîmîya edetan nîyê, ver bi modernîye şinê. Ê ke mabên de manenê bolê ci qîmetê edet û toreyan nêzanê, muhîmîya ci nêzanê. Nêzanê ke edet û toreyî nasnameyê merdimî yê.

# Şeyda Asmîn û "zeman sey fekê kardî bî"

**Bedrîye TOPAÇ**

Kirmancîya rindeke rê Şeyda rayîr kena ra. Ez fekê kardî de rêça Şeyda de rayîr şona. Reça Şeyda zaf-zaf qayîm a. Merdim xo ra bawer rêça aye de şono. Şeyda ge serê yew koyî de, ge mektebanê tarîyan de, ge-gane zî sêneyê yew cinîye de ya. Mi rê rayîr kena ra. Hîkayeyanê Şeyda de merdim nêşikîno yew ca de bimano. Tim gêreno. Koyan ra gêreno, dewan ra gêreno. Ruh û rîyê merdiman ra gêreno. Çekuyanê aye de merdim beno merdim û xo nas keno. Kamîya xo, welatê xo vîneno.

"Ricifiyayêne. Sey mîlçika serê vewre ricifiyayêne. Porê xo yo derg û sîya bîbî vila. Çimanê xo de qisawetêk ke hetanî a roje mi qet çimêk de nêdîbî estbî. Se bîbî? Çîyî a ardîbî nê halî? Ma qey ci rê serd bî? Însan serd û seqemê zimistanî de kî nîya nêbeno. Mi va çimanê xo de qisawet esto ne? Nê, nê çi qisawet? Çîyo ke çimanê aye de asayêne çekuya qisawetî ci rê zaf sivik manena." (Zeman Sey Fekê Kardî Bî, 63)

Hîkayeyanê Şeyda de tim wina yo. Merdim tim germinîya zerrî û vijdanî vineno. Yew nuştoxe qehremana xo rê wina dejena. Zerrîya xo wina zîz kena û wina wayîr vejîna. Merdim pêro qehremanan de nuştoxe vîneno. A xo qet nênimnena. Şeyda ruhê pêro qehremananê xo de ya. Înan de bermena, huyena, tersena û yan zî omid kena.

"Çimê xoyê girsî kerdîbî vît aye de nîyadayêne. A kî ey ra tepîya nêmendîbî. Aye kî çimê xo yê sîyayê girsî vîtê ey kerdîbî. Nîya demêk yewbînî de nîyada. No dem çiqas bî aye qet nêzanit. Sanîya bî, deqa bî? Saete bî? Çiqas ontîbî aye nêzana. Teyna no zanitêne ke aye rê zaf derg ameybî. O ame xo, aye de peşmerîya, bi vazdayîş şî resa cendermanê bînan." (Zeman Sey Fekê Kardî Bî, r. 141)

"Omid vîndî nêbeno." Erê, Şeyda ma ra tim wina vana, Bêrîvana aye ma rê wina vana. Însanbîyayîş çiqas pîroz o, ana vîrê ma.

"Oooo, Alo vingo, Mastê mîya, Ser selika, Bin qulika, Cila here, Teqle bîya, Ser ra şîya, Ti ve-cî-ya."

Û çekuyê Şeyda domanîya ma ra, dewanê ma ra ma rê vengan anê. Gelo şima vengê huyayîşê domanan anê xo vîr? Hîkayeyanê Şeyda de domanî tim




der û dormeyê şima de yê, şima înan de rayîr şonê û vengê girpayîşê zerrîya înan şima rê zaf nas yeno. Tewr çîyo weş kî cinî û camêrdî çekuyanê aye pîya û têdûşt de xemelnenê.

Raywanîya Şeyda raywanîya cinîyanê kirmancan a û ez omid kena ke na raywanîya pîroze de rayîr û rayîrwanê ma bizêdîyê. Wa Şeyda bi zerrî û çekuyanê xo bizêdîyo, vila bibo...

# Yê serxwebûna Kurdistana nexwaze bê feraset e

**Serokê Kurdistana Sor ku li Qerebaxê di 20 Gulan a 1992'an de hat damezrandin Wekîl Mûstafaev li ser jiyan, tekoşîn û dîroka Kurdistana Sor û Kurdistana Laçîn agahiyên balkêş dan.**

**Rawîn STERK**

Piştî hilweşandina Kurdistana Sor, di salên 1990'î de bi pêşengiya Wekîl Mûstafaev tevgerek ji nûve avakirina Kurdistanê, li nava kurdên Qafqasya'yê derdikeve holê. Ji ber ku Sovyet di nava belavbûnê de ye, bi piştgiriya wan hewildanên avakirina Kurdistana Laçîn derdikevin. Mûstafaev ku niha 76 salî ye û ji 1999'an vir ve ye li İtalya'yê dijî bi BasNûçe re axivî. Mûstafaev ku êdî kalemêrekî dîrokzan û bi şopandina siyaset û dîroka kurdan a niha jî li ser xwe ye diyarkir ku bo damezrandina Kurdistana Laçîn ji Abdullah Ocalan daxwaza tîmek gerîlla kiriye lê wan piştgirî nedaye.

Mûstafaev diyarkir ku wê demê hem Rûsan û hem jî Ermanistanê piştgiriya Kurdistanek serbixwe kiriye lê Apocî û hin kesên kurd piştgirî nedane wan. Mûstafaev di derbarê rewşa niha û serxwebûna Kurdistanê de jî wiha got: "Kesên ku dibêjin em Kurdistana serbixwe naxwazin bênamûs in, wan qaf xwariye. Cihê wan tîmarxane ye. Lazime ew li nexweşxaneya dînan bên tedawîkirin. Niha 3 serokên me kurdan hene. Yek nexweş e, yek girtî ye û yek jî Kurdistanê ava dike. Divê em hemû kurd li dora Barzanî bibin xeleq."

***Di destpêkê de em dixwazin hinekî bi gotinên te, li ser jiyan û bîranîna te bisekinin. Tu dikarî hinekî behsa jiyana xwe bikî?***

**Ez kok û eslê me Kurdistana**

Qafkasan e. Em Celalî ne. Celaliyan serokatiya Ermenîsan heta Batûmê dikir. Serdarê wan wê demê Hesen Celalî û Husen Celalî bûn. Wana 1804'an heta 1827'a şerê Ûris dikirin. Di sala 27'an de hatin topbarankirin û hêla me teslîmî Rûsan bûn. Hemû axa Qafqasan wê demê teslîm Rûsan bû. Genarelê Rûsan yê wê demê rapor dabû qraliyetê ku bêyê alikariya kurdan nikaribin Stenbolê têxin bin destê xwe. Lê razîlix derneket li ser vê. Gotin kurdan qirkin û piştgiriya ermenan bikin. 1920'ê salê tenê xanekî kurdan ma. Sultan Xan bû ew jî. Li Qarabaxê bû. Piştî wê mecbûr bû ku têkeve bin destê Başrîka û sewa xatirê Ataturk Xanlixa Kurdistana



wir dan tirkan û pişt re Azerbeycan çê bû. Dema serdariya Celaliyan û serdariya İbrahîmê Hesikî bavê min jî şer kir. Hetta 61'ê salê di wî şerî de Rûsya hatin û Kurdistan a Qafqasan belav kirin. Milletê me jî kete bin asîmîlasyonê. Ji 36-37'an pê de serhildana Seyîd Riza derket û kurdên me zivistanê de koçî Qirgizistanê û Qazakistanê kirin. Ez di sala 38'an de ji dayîk bûm. Niha her tiştê me li Ermenistan, Azarbeycanê ye. Hatin ji wan re dewlet çê kirin û em bê dewlet man. Di nava 70 salî de Rûsan çar caran jenosîda me kurdan kirin. Kurd wê demê sirgûnî Qirgizistanê û Qazakistanê kirin.

***Têkiliya te û Rûsan çawabû?***

Ez di nava eskerê sor de bûm. Di şer de ez bûm zabit. Stêrk dan ser milê min. Hem di şer de hem di îstixbaratê de min 33 salan kar kir. Wana gelek bi min bawer dikirin. Di şerê Rûs û arteşên din de wana kurd baş naskiribûn. Dizanîn ku kurd di şeran de çawa ne. Wexta gazî min kirin Moskova yê sereskerê Rûs got, 'Wekîl hukumeta Ermenistanê jî, ya Rûs jî bi te bawer dike. Wan bi min pak bawer dikirin.

***Têkiliya Rûsan bi me re pir başbû***

***Bêyî te têkiliya civaka kurd û dewleta Rûs çawabû?***

Rûs û kurd duset sal dijmin bûn. Ewna jî eynî wek Tirkiye, Iraq, Iran û Sûriye çawa naxwaze kurd serkevin, li Qafqasan jî Rûs'an wê demê eynî bi vî rengî nêzikî kurdan dibû. Rûsya jî kolonîzasê Kurdistana Qafqasê ye. Li wir çend caran serhildana kurdan pêk hatiye, arteşa Rûs koka kurdan anî ye. Çimkî Rûs jî hevalê tirkan, farsan e. Ewna zanin ku Kurdistan çê bibe qafqasyayê, ew bo Rûsan baş nabe. Rûs ji me ditirse. Di 85'an de berdestiyê serokê partiya Moskovê gazî min kirin û gotin, "Wekîl em ji kurdan ditirsin. Kurdistan çêbibe wê heqê me de derkevin" ji ber ku dîroka me baş zanin û ji me ditirsin. Îro jî Iran, Iraq Sûriye û Tirkiye jî dîroka me pak zanin. Ji bo wê Kurdistanê naxwazin. Saddam dema bi ximye êrîşî kurdan kir, dizanî ku Rûs li dij wî dernakeve. Heke baweriya wî bi Rûs nebûya nediwêrî. Rûs pişta wan digirt. Ya Iranê jî digirt. Wexta ku ordiya Rûs neçar ma ku ji Qafqaya'yê derket, Azerbaycan got axa me axa tirkan e û serê xwe rakirin. De vê carê sewa ku enerjî û petrol û qaza Orta Asya neçe Tirkiye, Rûs neçar ma ku Kurdistanekê avake. Ermeniyan jî dizanibû ku bêyî axa kurdan ew nikarin derkevin behrê. Hemû dora Ermanistanê hatibû dorpêçkirin. Aliyê Azerbeycan, Gurcistan û dewletên din ve.

***Wek em zanin Kurdistana Sor ji aliyê Rûsan ve hat hilweşandin. Lê çawa dîsa Rûsan piştgirî da Kurdistana Laçîn bê damezrandin?***

1920'ê salan de Xana kurda yek tenê mabû. Sultan Xan. Ew kete nava Azarbeycan lê wana tiştek neda kurdan. Pişt re kurd rabûnserhildanê. Li Ermenistan û Azerbaycên rabûn serhildan da kû tevlî wan bûne lê ew dewlet tiştek nedidan kurdan. Kurd wek tirk yan jî ermen dinivîsîn. Millete kurd bi wî awayî yox dibû. Kurdistana Sor 1831'e salê de hilweşî. Yanê Rûsan bo çavbelekiya me piştgirî nedida me. Sedema wan enerjî, petrol û qaza qafqasyayêbû. Mecbûrbûn ku ji qafqasyayê bixwe derketin, ew der vala nemine. Ji berk u Qafqas bo Rûs stratejîkbû. Enerjiya Tirkmenistan, Ozbekistan, Qirgizistan û hemû Orta Asya'yê wê biçûya Tirkiye. Erdeki pir mezin dikir ji destê Rûsan derkeve. Hereketa Rûs wê demê pir kêm bû. Heger ku wê demê Rûs û Tirkiye li ser enerjiyê şer bikira, NATO jî piştgiriya Tirkiye dikir. Çavê Rûs nebirî. Di şerê Qerebaxê de Rûs piştgirî da Ermaniya. Tirkiye li ber lêxistina Rûsan bû. Sewa wê tenê dima mehla kurda. Haydar Aliyev wê demê ji Rûsan re got bila Kurdistan çênebe û ezê hemû petrola xwe bidim te, û nan av jî bidim artêşa te. Lê Rûsan dizanî pişt re wê rewş here kuderê. Rûsan jî digot di vê rewşa giran de bila tiştek nekeve destê tirkan, bila di destê dewletên biçûk de be ku sibê dîsa bixwe bikaribe bizivirê van deran. Mesele ya Ermenistan Rûs û ya me bû. De wan jî bi min bawer dikirin. Dijminê me nehiştin ku em bi serkevin. Xayînê me nehiştin. Hemedê Hapo, Gabar, Tahirê Suleyman û yê din ji Azerbeycên gelek pere stendin hatin nav me. Li cem wan ku ez hatime xapandin. Azerbeycan ji wan re gotibû Wekîl hatiye xapandin herin nehêlin ku Kurdistan ava be. 3 milyon 500 hezar dolar pere wê demê ji Azerbeycanê stendibûn. Ew hersê kes jî kurd bûn. Gazî min kirin, ez çûm Moskovê bo civînê. Mesele ji min re vekirin. Got divê tu bibêjî ew ne axa kurdan e û ya Azerbaycan e. Ez acizbûm, min kir şer, min got qet we bihîstiye ku kurdan namûsa xwe bi pere firotiye.

***Wê demê hêzeke we ya leşkerî tunebû. Dema hêza leşkerî ne be çawa welatek bê damezrandin? We çawa ew biryar da?***

Tenê du sed leşkere kurdên me

misilman hebûna bes bû. Kurdên êzdî bi hezaran hatin û amadebûn bo şer. Bi çek bûn û digotin em amade ne. Çek, kinc, xwarin arteşa Rûs dida me. Digotin hun ji xwe re arteşekê avakin êmê 7 akademiya ji we re çêkin û çiqas tişt ji we re lazim e emê bidin we. Ji bo teyare, top û çekên din 7 akademî wê ji me re çêkirana. Me ew tişt yeko yeko axaftibû û me biryar dabû.

***Nifûsa Laçîn wê demê çiqasbû?***

Wê demê nifûsa me dora 70 hezarî bû. Gorbaçov wê demê biryar dabû ku Kurdistan bê damezrandin. Biryara me ya damezrandinê wê piştî du mehan pêk bihata. Liçîn û Kelbecer di pêymana Gobel de bi fênekî dan Ermenistanê. Sewa vê plana me û Rûsan pêk nehat. Kurdên me êzdî li ser vê rabûn ser piya. Gotin emê bi çekan li ber xwe bidin. Lê cehşên me nehiştin ku kurdên misilman bên. Beriya ku em damezrînin Azerbeycan ket nava deq û dolaban û got heke hûn Kurdistanê avakin emê nîv milyon kurdên li Azerbeycanê di şevekê de qirkin. Sewa wê kurdên ku bihatana hewariya me jî newêrîn bên.

***Wê demê piştgiriya Ermenistanê çawabû?***

Piştgiriya Ermenan lazimbû bo wan. Erman mecbûrbûn bo piştgiriya me bikin. Ji ber ku ew ji aliyê Azerbeycan û dewletên din ve hatibû dorpêçkirin. Nedikarîn ne ji derve bistînin ne jî bifroşin. Do orta dijmin de mabûn. Riya derkeve behrê tunebû. Kurdistan ku çêbê wan dikarî xwe bigihînin behrê. Ev ambargo bi riya kurdan dihat şikandinê. Bolşevîkan bi awayekî bêqanûnî erdê kurda dabû dewletên din. Ermenan jî ev tişt digotin. Hewcedariya wan bi me hebû.

***Hun wê demê bi kîjan rayedarên Rûsan re dihatin cem hev û we nîqaş bi kê re dikirin?***

Em zêdetir bi General Palkolnîk re dihatin ba hev. Bi kesên siyasî re me pir xeber nedida. 3 kesan mijar dizanî. Ez, sereskerê Rûs û rêvebirekî Ermenistanê. Ji ber ku ew sirra dewletêbû. Ev sir ji aliyê kesekî din ve nedihat zanîn. Dema ku me Kurdistan îlanbikira Tirkiye ordiya xwe anî, Iranê ordiya xwe anî gotin emê we tev Ermenistanê bombebarankin. Rûsan ji wan re digot hadê bimeşin. Karê we bi Ermenistanê nîn e. Heke hun destê xwe pê bikin emê tiştê nema bînin serê we. Meseleyek polîtîkbû. Hindik mabû sewa Kurdistanê li Yerewanê xin.

***Pişt re çi qewimî? Tu bûy Serokê Tevgera Azadiyê?***

Belê me hewilda ku em Kurdistanê avakin û wek serok jî ez hatim hilbijartin. Me civat çêkir. Pişt re me Kurdistan îlankir. Piştî du meha meye hilbijartin lidarxista da ku serokwezîr û rayedarên din bêne hilbijartin. Bê hilbijartinê nabe. Lê ji ber me nikarî arteşêke avakin, em negihiştin wê astê. Kurdan nexwest em çi bikin. Piştgirî nedan me. Kurdên misilman nehatin hewariya me. Kurdistan'a Laçîn du mehan dewam kir. Li hemû dinyayê rojnameger hatin, milletên din hatin. Mesele li bitûn dinyayê belav bû. Ew der erdê me bû. Destûrek dîrokê derketibû. Me li gor qanûnan her tişt dikir.

***Li qada hiqûqa navdewletî naskirin hebû?***

Rojnameyên cîhanê nivîsin da ku ev der cîhê kurdan e. Her tişt li gor qanûnên cîhanêbû. Destûr hebû. Ji ber ku ew erd erdê me ye. Herkesî jî dizanî. Ji xwa dibêjin 'qafê qaza' navê wir jî kurdî ye. Kurd beriya 8 hezar sal hatine li wir bi cîh bûne. Ew ji aliyê herkesî ve dihate zanîn.

**Apociyan nexwestin ku em Kurdistanê avakin.**

***Öcalan çi pêşniyar bo te kir?***

Got here prêzenta Ermenistanê re xeber de, heke qebûlbikin emê xeberdin. Got tu serokatiyê bike. Kasetek jî da min lê ereban ji min stend. Ku ez vegeriyam dîsa Mahîr Welat hat cem min. Min dît ku rewş guheriye. Rusan ji wê pê ve gotin em bêyî Mahîr Welat kesekî nasnakin. Xetayekî mezin çêbû. Polîtîkaya Rûsan a li hember me guherî. Mahîr Welat ji Rûsan re lazimbû. Sirra PKK hemû dizanî. Ez nizanim helbet. Bitûn sirra wan dida Rûsa. Ez çizanim. Ez zanim bijî Apo bijî serok. Lê ji wan re sir lazimbû. Mahîr Welat hat min got em herin cem Rûsan. Got ne hewceye ezê paşê herim. Min got law tu ne Ermenîkî zanî ne rûsî. Got ezê tercumanekî pêydakim. Min wê hîngê tê kir der ku rewş çawa guheriye. Ser de jî Apo hat girtin. Welat pereyên ku ji Azerbeycanê stendibû da Jirinowskî. 4 milyon dolar. Apo hat wir û pişt re ji wir jî hat derxistin. Min ji Mahîr Welat re got lawo min rêspuplîkek çêrantiye û tû jî min diçêrînî. Min mijar famkir lê em çibikin. Apo li cihê ku biçe nav gerilla hat Rusya. Mahîr Welat xayintiya wan jî kir. Apo jî bişt re nivîsî û got Mahîr Welat Kurdistan firot.

***Dema tu çûyî cem Ocalan te li wir ders jî da ne?***

Belê min çend rojan li ser istixbaratê ders dan hevalan.

**Tu kêngê çûyî Ewropa, İtalya'yê?**

Di sala 99'an de ez hatim vir û min li vir dest bi nivîsandinê kir. Min dîroka Kurdistanê nivîsî. Pişt re min Dîroka Kurdistana Qafakasya nivîsî û dû re jî min jan û jiyana xwe nivîsî. Millet hîn jî dibêjie were vir û serdariyê bike de ku milletê me asîmîle dibe.

**Yên ku bibêjin em serxwebûnê naxwazin cîhê wan tîmarxane ye.**

***Hin kurd niha dibêjin em Kurdistana serbixwe naxwazin tu li ser vê çi difikirî?***

Gerek kurd niha yekitiya xwe pêk bînin. Millet nikare yekitiyê çêbike. Yekitî bi destê şexsan çêdibe. Dîrokê jî şexs çêdike. Em wek pezê bê şivan in. Niha yek dibê sosyalizm, yek dibê qomînîzm, yek dibê kurreder. Yên ku dibên em kurdistana serbixwe naxwazin bê feraset in. Wan qaf xwari ne. Di nava arteşan de dema leşkerek bêjê 'ez serxwebûnê naxwazim' fermandar wî didin ber guleyan. Yên ku yekitiyê dixwazin divê ji xwe re serokekî hilbijêrin. Niha 3 serokên me hene, yek nexweş e, yek girtî ye û yek jî niha Kurdistanê ava dike. Dema ku meriv xwedî mêjî be niha serok, Barzanî ye. Ew û partiya wî û eşîra wî di nava şer de jiyane. Ji bo Kurdistanê şer kirine. Carina xayîntî nekiriye. Ez bi dil û can bi Barzanî re me. Min xeletiyek, xetayek ji wî nedîtiye. Rojava îro ji xwe re serokek çêkirin. Salih Mûslîm. Divê em Kurdistanê naxwazin. Lê tu çi dixwazî kuro. Dibê ez kanton dixwazin. Kanton ji bo İtalya bo Swêdê dibe. Te 3 kanton çêkirine. Te ji bo kê çêkirine. Min du heb zanîngeh kuta kir ez zanim kanton çiye.

**Heya ku ez Kurdistana azad nebînim ez namirim.**

***Tu naxwazî ku vegerî Kurdistanê?***

Helbet dixwazim. Lê Kurdistana Qafqas êdî têk çûye. Dema ku ez herim wir û nikaribim tiştekî bikim ezê pir biêşêm. Bo wê ez naçim. Parçeyên din jî ji ber ku ne azad in ez naçim. Kurdistana Başûr niha azad e lê li wir jî dema kî diçe daxwaza pereyan dikin. Herkes bo pere xwastinê diçe. Heke ez herim dibe ku hin ji bo min jî vê bibêjin. Ger ku di derheqê min de tiştekî wiha derkefe ew mirin e bo min. Lê ku rêvebiriya wir gazî min ke ezê herim. Ez dixwazim Kurdistana Serbixwe bibinim û pişt re bimirim.

## Piştî ku projeya we têk çû çi qewimî?



Piştî wê hevalan, Apociyan gotin ew der ji me re ne lazim e. Apociya ji aliyekî nehiştin. Wê demê Mahîr Welat hat. Gotin ji me re ew Kurdistan ne lazim e. Em Kurdistana Mezin çêdikin û em naxwazin ku millete me bibe 5 parçe. Hiqumeta Rusya û Mahîr Welat ve em hatin cem hev. Me nîqaşkir. Rus'an got em ji we re li Rusya'yê çend cihan bidin we. Madem ku Kurdistan ava nebû milletê xwe bînin li vir bi cîh bikin heya ku rewş aram bûye. Mahir Welat ji wê re jî got na. Me bi wî re şer kir. Min ji wan daxwaziya dused heb gerîla kir. Got Apo gazî te dike û du xort hatin gotin em te bibin cem Apo. Rûsan got 'Wekîl meriyek tenê ye, ma hun çima hem mala xwe him ya me dişewitînin. Bihêlin bila Kurdistan ava be.' Lê Welat got na. Got serok gazî te dike. 97'an de ez çûm cem Apo, li Şamê. 3 caran gazî min kiribû. Min ji wî xwast ku min tev malbata xwe bişîne çiyê nava şer. Min dixwest biçim şer bikim. Pîreka min bînbaşî ye. Kurê min herdû jî pehlewan in. Em malbatek şerwan in. Min meseleya Kurdistana Laçîn jê re vekir. Min got hinek gerîlla bişîne hewariya min. Min got ereb dijminê me ne, ji me îstifade dike û Kurdistanê naxwazin. Got ez zanim. Min got madem ku dizanî were Kurdistana Laçîn, rûne seroktiyê bike. Em li wir çekan, şerwanan pêydakin û bişînin vir jî. Got na. Fikra me nepejirandin. Min got heval hun ji bo kurdên Tirkiye hereket dikin û ez jî bo yên Qafqasê hereket dikim. Hun çima wiha dikin? Nebû axir.

## Tevî hemû astengiyan

# Em ji bo Rojava amade ne

Siyasetmedarê Rojavayî Ebdulhekîm Beşar ku heya niha di nava çend rêşistinên cûda de cîh girtiye û niha hem wek rêvebirê El Partî tê naskirin, hem di nava ENKS'ê de û hem jî li ser navê ENKS'ê di nava Koalîsyona Neteweyî ya Sûriye de cih digire, li ser rewşa Rojava ya heyî ji BasNûçe re axivî.

Abdulhekîm Beşar diyarkir ku heya niha PYD'ê nehiştiye ku partiyên din bi hêzên xwe piştgiriya Rojava bikin. Beşar Wiha got, "Ji destpêkê vir ve PYD dibêje bêyî me kes nikare bi çekdarî tev bigere. Nahêlin ku partiyên din karekî bikin. Me mijar heya Qendîlê bir lê tu pêşveçûn çênebûn. Tevî her tiştî jî divê êdî ev hemû hesab ji aliyekî bêne hiştin û bo Kobanê, bo Rojava PYD destûr bide ku hemû hêz li ber xwe bidin."

### "Divê her kes bikaribe bajarê xwe biparêze"

Beşar destnîşan kir ku şerê li Rojava zêdetir di navbera komên DAİŞ û YPG-YPJ'ê de ye û PYD nehiştiye bê wan kes destê xwe bavêjin çekan û wiha dirêjî da axaftina xwe: "PYD nehişt tu kes li kêleka wan berewaniyê bikin. Lê ku her dikevin tengasiyan bangî derdorê dikin mixabin. Ku ez bê çek bim, destvala bim, destgirtî bim nikarim alîkariyê bikim. Di şerê Serêkaniyê de bi tevayê tevgerên siyasî li eniyekê şer kirin. Her kes mecbure ku li hember komê çekdar parastina bajarê xwe bike. PYD siyaseta ku kesî li ba xwe qebûl nake dimeşîne ji ber wê bi Encûmanî Niştimanî Kurdî re pirsgirêkan dijî." Beşar derbarê pirsa me ya bo çareserkirina vê pirsgirêkê tiştek kirine ana na waha bersiv da: " Bi hewla Mesûd Barzanî hevpeymaniya Hewlêrê hat qebûlkirin, me li ser rêvebirina nîve nîv li hev kir. Hevpeyman mixabin nehat cih. PYD digot hêzek heye ku xwe didin pişt bidin ku nadin ne pêkan e ku hêzek din çêbe. Dema Barzanî hat Amedê ji BDP hin kesan doza bi hev kirina partiyên li Kurdistana Sûrî kirin. Barzanî Encûmena Rojavayê Kurdistan û Encûmanî Niştimanî Kurdî li hev anî, gotin me li hev kir lê mixabin dema vegeriyan Kurdistana Sûrî tiştek bi cih nehat."

### "Em naxwazin ku qet guleyek me li sîngê birayê me keve"

Beşar derbarê bûyerên li Amûdê ku bibû sedema gelek nîqaş û dijberiyan jî agahî dan me. Beşar bal kişand ser astengiyên li hember karkirina wan û wiha gotinên xwe domandin: " PYD bêyî xwe kesekî an jî partiyek din naxwazin. Her tim bi ser ofisên partiyên din de tên. Hatin ofisa me dorpêçkirin. Em li ofisê rûniştîbûn me dît ku komek YPG dora avahiyê girtin. Li gel me 5-6 tiving hebûn û me ew xistin odeyekê û me derî kilît kir. Me got wê qet fişekek me dê li singa birayên me nekeve." Beşar di vê bûyerê xwerziyek xwe yê li ser banê ku bi telefonê diaxive wenda dike û 17 rojan di zîndanê de dimîne. Beşar wan rojan xwe yê zindanê ji me re waha rewa dike: "Ez, 5 kurên min û hin hevalên me birin avêtin cihekî. Du roj û du şevan ne av ne jî nan dan me. Bi lêdan, îşkence û heqaretan 17 rojan em li wir girtin. Ev ne tiştekî mirovî ye. Ka em birayê hev bûn. Me çi bi we kir ku we ev anî serê me."

Beşar ji bo astengiyên ku PYD datîne ser partiyên din jî gazinên xwe bi van gotinan anî ziman, "Di hevpeymana Hewlêrê de me biryar da ku 5 kes ji Encûmanî Niştimanî Kurdî 5 kes jî Encûmena Rojavayê Kurdistan rêveberiya çi hêzên leşkerî hebe bike. Mixabin ev jî bi cîh nehat, piranî ewan biryar dida. Di van dawiyan de li hember siyasiyên kurda gelek çewt tevdigerin. Dema siyasiyên kurda ji başûr vedigerin dibêjin çênabe ku hûn derbas bibin. Ofîsîn partiyên kurda girtin. Birêz Birahîm Biro sekreterê partiya me ye, dema ji Sipanya'yê vedigere li deriyê Sêmalka tê astenkirin nahêlên bikeve Rojava. Hevalê me Bedran Misto li Serêkaniyê li kêleka YPG şer kir. Misto xwest ku semînerek çêbike. Hatin semînera wî asteng kirin û gotin ku tuyê gere nava 24 seatan de ji kantonê derkevî."

### Dilê me bi Kobanê re ye

Ji ber ku di dema dawî de DAIŞ'ê berê xwe careke din da Rojava û li Kobanê bi çekin giran êrîşan dikin, di serî de Salih Muslîm û tev rêvebirên KCK'ê, bi daxuyaniyan banga piştgiriyê kirin ji bo hemû kurdan. Beşar got ku rewşa Kobanê cihê xeman e û divê hemû kurd li dora Kobanê bibin çeper û helbet PYD jî nêzikahiya xwe ya hişk sist bike. Beşar wiha got, "Nelihevkirina me bû sedem ku em bigîjin vê astê. Li Kobanê îro gel bi qîzên xwe, bûkên xwe, pîrên xwe li ber xwe dide, şer dike. Beriya ku vê bangê bike dibê li hember hêzên din rêz bigirta. Te dest li pişt min girêdaye û tu ketî tengasiyê bang dikî lê ez nikarim werim, destê min girêdayî ye. Ku te girê nedaba hewce nedikir ku te bang bikira, ez û tu niha li kêleka hevbûna. Çi bihata serê te wê bihata serê min jî. Niha bang dikin ku hemû kurd biçin alikariyê. Lê birayê min te destên min girêdane û tu dibêjî were hewariya min. Ku destê min girêdayîbin ez nikarim tiştekî bikim. Rojekê hatin ofisa me dorpêç kirin. Ez 5 kurên min û hin hevalên din em li ofisêbûn. Çend tiving jî li gel me bûn. Me hema ew çek veşartin ji ber ku me nexwest ku guleyek me li birayê bikeve. Lê wan xwarziyekî min ê li ser banê dan ber guleyan kuştin û bi serde jî çûn ew bi pêhnan avêtin jêr. Em girtin û birin cihekî. Du roj û du şevan ne av ne xwarin dan me. 17 roja em bi îşkence, lêdan û heqaretan li wir em girtin. Dîsa jî em amade ne ku li gel birayên xwe şer bikin. Lê divê hinekî ew jî rewşa xwe biguhirin. Me mesele hetanî Qendîlê jî bir. Lê tuştek neguhirî"

Li ser mijar ku Hukumeta Kurdistanê alikariya Rojava dike an nake jî agahiyên ku Beşar dan balkêş in. Bi ya wî nakokiyên di navbera PDK û PKK'ê de nahêlin ku yekitiya kurdan pêk bê. Beşar li ser vê mijarê wiha got, "Başur di warê mirovî de gelek alîkarî kir. Lê di serî de Barzanî xwast ku hêzek çekdar jî li wir bigihînê. Lê ji ber PYD ev tişt nexwest, Hukumeta Başûr jî nexwest ku li wir du hêzên kurdan bi hevkevin. Diyarbû ku heke bêyî YPG hêzeke din hebe, wê kurd di nava hev de şer bikin. DAIŞ niha bi awayekî metirsî êrîş dike. Divê hemû nakokî û berjewendiyên partiyan em li hêlekê bihêlin û li hemberî vê bibin yek. Lê nabe. Çend hevalên me yên partiyê ji hela PYD'ê ve belesebeb hatin girtin û ew birin ji sînor derxistin. Beriya ku kanton bêne avakirin hemû partiyan nêrînên xwe anîn ziman lê li ber çavan nehatin girtin. Me got em hemû partî bên cem hev û deh kesan wek berpirs û rêvebir hilbijêrin. Bila 5 kes ji partiyên din bin û 5 jî ji PYD'ê bin. Ew jî qebûl nekirin. Divê PYD bizanibe ku sedema ku Rojava hîn di bin zextan de ye PYD bixwe ye. Em tevî her tiştî jî amadene ku bên ba hev û bi hev re têbikoşin."



### Heqdesta karmendên kantonan rejîm dide

Li ser mijara ku li gor hin derdoran di navbera PYD û Rejîma Esad de hevpeymaniyek veşartî didome jî Beşar hin agahî dan. Li gor vê, di navbera PYD û Esad de heya niha tiştekî zelal derneketiye û li gelek cîhan hêzên PYD û yên rejîmê bi qasî çend gavan nêzikî hev disekinin lê qet dubendiyek neketiye navbera wan, Beşar ev gotin anîn ziman, "Her çiqas ku em teqez nikaribin biaxivin jî ji ber ku li Qamîşlo di navbera wan de tu şer û pevçûn tune ne gotinên di navbera wan de tiştê nexuyayî hene tê kirin. Dibêjin me herêma kurdan azad kiriye lê hetanî niha li Amûdê, li peytexta kantonê heqdesta karmendên rejîm dide. Gava kantonek azad be divê ew pereyên van kesan bi xwe biden. Beşar Esed hê jî hêzên xwe li Rojava paş ve nekişandine. Li hin deran asayîşa wî jî heye ya YPG jî heye. Sibê ku li Sûriye rewş aram bie û Esad bigihêje asta xwe ya berê, wê bibêje, 'kekê min dema ku me ji we re veqetatibû bi dawî bû. Keremkin biçin. Û wê demê kesek nikare tiştekî jî bike ji ber ku PYD bi zelalî têkiliya xwe ya bi wan re diyar nerikiye."



# Kurd û cihû aşiqane ji hev hez dikin

Di nava alozî û xirecira Dewleta Îslamî ya Şam û Îraqê (DAÎŞ) de ku rêya xwe bo Îraqê vekiriye û Xelîfe jî destnîşan kiriye, nêrînek derketina welateke nû û bi hêz ji dilê wan aloziyan xuyaye, dewleta serbixwe ya Kurdistanê li herêmeke nîv serbixwe ya Kurdistanê li bakurê Îraqê, ku bajarê dewlemend û hertim şer li ser ê Kerkûkê jî têde ye û herî dawî ketiye destê Pêşmergeyan.

Li rojhilata navîn kêm kes weke Elizeir Geizi Tsafrir wê vîna kurdan his dike. Ew berpirsekî berê yê saloxdariya Îsraîl "Mossad"ê ye ku di dema xebata xwe ya domdirêj li Hewlêr, Beyrût û Tehranê xebata xwe meşandiye, şahidê peywendiyên perîşan ên kurdan bi cîranên xwe yê bê sibat re bûye. Di sala 1975'ê de dema şahê Îranê peymannameya Cezayirê bi Saddam re mor kir û pişta kurdan berda, Elizeir bi şev û di rewşekê de ku rejîma Îraqê êrîşa ser kurdan destpêkir ji Kurdistanê reviya. Di rojên şoreşa gelên Îranê de, wî di pileya Serokê Mossadê li Tehranê, operasyona derxistina hezar û 500 cihûyan rêk xist. Navbirî bi destpêka Şoreşa Eylûlê, wate salên 1960'î dema ku Îsraîlê li dijî dewleta navendî ya Îraqê hevkariya kurdan dikir, li wî welatî bû. Tsafrir di derbarê Kurdistana serbixwe de wiha got, "Derbarê bûyerên ku li Sûriye û Îraqê qewimîne, bêguman herêm bi hakimiyeta dewleteke kurdî ya bi hêz, cêgîrtir dibe. Heya niha ji xeynî krîzê tişteke din nebûye. Kurdan li herêmên cuda gelek êş û zehmetî dîtine û li Îraqê li hember hemû tevkujiyan xwe ragirtine, ji kîmiyabarana Helebceyê bigre heya oparasyona Enfalê. Ew bi salanae ku bi dijwarî dijîn. Di wan salan de vînek di navbera Îsraîl û kurdan de çêbûye. Îsraîl zêdetir tiştên bêhtir ji bo kurdan dixwazin û bawerin ku ne aramiyên li herêmê wê rêya serxwebûna Kurdistanê ronî bike."

**Israîl dê ji ber hemû dewletan Kurdistanê bipejirîne**

Tsrafrir diyarkir ku Îsraîl wê beriya her welatî bi fermî piştgiriya Kurdistana serbixwe bike. Tsafrir wiha domkir, "Ger derfetek ji bo serxwebûna Kurdistanê çêbibe, Îsraîl wê bi awayekî fermî beriya her welatekî piştgîriya wan bike û ger hewce be wê piştgîriya wan jî bike. Welatên rojavayî jî wê bêguman heman karî bikin. Dixwazim bêjim bextewerane Tirkiyê gelek mijûlê aboriya dewleta Kurdistana Îraqê ye, bi awayekî ku kurd û tirk bi hevre petrola Kurdistanê dişînin derve, tevî hebûn û muxalifeta Bexdayê û qanûn Îraqê jî ev kar tê kirin. Pêvajoyeke nû çêbûye û hişmendiyeke hevbeş di nav Tirkiyê, kurd û îraqê de çêbûye. Kî/ê difikirî rojekî petrola Kurdistanê wê bigehe Îsraîlê? Tevî hemû hurmeta min bo Tirkiyê, ew baweriya beşa herî zêde ya îsraîliyan e ku evê cardin ber bi aliyê me ve bên û wê bizanin tevî hemû hewlên wan ji bo bandora li ser grûbên ereb û îslamî, take aliyê ku wê li rojhilata navîn de bikaribin pê piştgerm bibin, Îsraîle. Heta piştî wê jî wê pirsgirêka wan bi kurdan re her berdewam dibe. Kes nizane, lê zêdetirî 40 mîlyon kurd hene ku hejmara wan gelek ji Îsraîl û Filistîniyan zêdetire, ku pirsgirêka wan ewqas li cîhanê deng vedaye, lê ji bo kurdan çareseriyek nîne û kes behsa wan nake."



Ji ber ku sînorên li Rojhilata Navîn êdî li ber guherînê ne, nêzikahiya Israîl xwedî balkêşiyek girîng e. Li ser vê mijarê li gor Tsafrir Peymana Skeys Picot hildiweşe. Tsafrir wiha dirêjî da axaftina xwe, "Ez herî dawî di daxuyaniyeke Serfermandarê Artêşa Îsraîlê de amade bûm û yekem dîmenê ku wî nîşan da, wêneyên Sykes û Picot bû. Wî got: 'Binêrin hevalên min' li cîhê wan du wêneyan wêneyê du grûbên cîhadî danî, 'rewşa heyî niha ev e.' Dema DAÎŞê êriş kir û Artêşa Îraqê revî, kurdan derfeta girtina Kerkûkê dît û bajêr kontorol kirin, Kerkûk ji ber dewlemendiya petrolê, xeta pêşîn a pevçûnan e. Lazim e jibîr nekin ku Saddam bi salan bi derxistina kurdan û bicîhkirina ereban li cîhê wan dixwest wî bajêrî bike yê ereban. Ji sala 2003ê kurdan hewlda malbatên kurd vegerîne ser xaka xwe. Îro kurd xwedî hêz in û di warê şêniya bajêr de jî zêdetir in, ew yek ji bo dan û stanên bi Îraqê re erênî ne. Guman nîne ku helkefta kurdan li Îraqê gelek baş e, tevî dîsiplîn, demokrasî û artêşeke bi hêz ji hêzên Pêşmergeyan, herwiha piştîvaniya welatên rojava û Amerîkayê jî. Kurd pîtîvanên welatên Rojava ne û ew yek selimandi ne. Tevî ku ew sune ne lê sofî nîn in. Bawerim bi dane ber hev a bi dewleta Îsraîlê re, wê di karê xwe de biserbikevin."

Tsafrir anî ziman ku têkiliya di navbera hêzên kurdan de jî ne wek berê ye û kurd êdi gihêştine ramana ku bêyî hevkariya hev nikarin pêşkeven. Tsafrir, "Peywendî di navbera wan de heye, belkî sedî sed nebe lê dilxweşker e. Di hilbijartinên dawî de, serokê partiya Talabanî, Noşîrwan Mistefa bi partiyeke nû hate meydanê û di hilbijartina yekem de zêdetirî Talabanî deng bidest xistin. Kurd dizanin ku hevkariya bi hevre ji bo xelkê lazime. Helbet Mesûd Barzanî jî ewqas bi temen nîn e û rêberekî ciwan tê hesibandin. Dewleta Kurdistanê hem li Hewlêrê hem jî li Silêmaniyê li ser tişta ku xelk bi fesadî binav dike, gelek muxalif hene. Ez bawer im avabûna civaka Kurdistanê ewqas demokratîk bûye."

Ji ber ku hin kes hêz û asayîşa Kurdistanê bo serxwebûnê besbûnî nabînin, bersiva Tsafrir li hemberî vê girîng e; "Bi qasî ku ji dema ez li Kurdistanê bûm tê bîra min û piştre min bi rêya medyayê şopandiye, rewşa hêza asayişa wan gelek ji ya welatên derdor baştir e û serkeftinên wan ji ya welatên derdorê kêmtir nebûye. Kurd û farsan hin nêzîkatî hene ku rengvedana hestên wan yên dîrokî li hember ereban e. Turk û iranî ewqas ji hev hez nakin, rêk weke kurd û tirkan. Zarok jî bi wan fikran mezin dibin lê dema pêdigehin, lazim e aqilanetir bifikirin û bijareya rast hilbijêrin. Ez bawer im kurd ji bo çêkirina peywendiyên baş bi cîranên xwe re wê hemû hewlan bidin. Ew li pey şer û tolhildanê nînin.

**Wergera ji farsî: Dêrsim Oremar**





# Suto Axayê Oremarî

Mithat KUTLAR

Koka ew kesên ku em niha dibêjinê kesên Oremarî, bi esasî li Şernexê, nav herêma Cizîra Botan tê. Gorî gotinên Selim Oremar, bapîrê Suto (Lemdîn) û birayê wî (mef) Cizîra Botan koç kirine li Colemêrgê. Mîrê Cizîra Botan nameyekê rêdike bo Mîrê Colemêrgê da ku malbatên Lemdînî u Mef'îyan cih bike nav erdê xwe. Mîrê Colemêrgê van kesan qebul dike û rêdike Oremar; dike cînarê ermeniyan. Mîrê Colemêrgê Lemdîn û Mefê emanet qeşeyê Dêra Mate dike. Rastî Oremar wê demê temamî cihê ermeniyan bû. Tev Ermenî van deran di jiyan. Lê belê piştî pisgirêka ermenîyan û tirkan destpêkirî, hikmê Oremarê ket bin destê Mef û Lemdiniyan.

**Xewa mirinê: Teto û Temo**

Oremariyan dema pêvîstiyek heba diçun Iraqê dikirîn. Çend ticareta miletê kurd yê Oremar û yên Colemêrgê hemu diçune Iraqê. Kirîn û frotina xwe Îraqê dikirin. Rêya karvanan jî exlebe nav çihê Rêkaniyan de diçû. Suto rojekê diçe Îraqê ji bo danzdeh kurên xwe, bi armûş û zêr we hatî neqişandin, xençeran dide çêkirin. Suto dibêje kesê xençeran çêdike: "Ez ewe çûm. Paşê ezê birayê xwe Heyo rêkem ewan xenceran"

Xatirê xwe dixwazît û zivirîte/vegere Oremarê. Rojekê Suto Axa birayê xwe Heyo (Heyder) li gel çend siwarên xwe re rêdike Îraqê da ku evan xenceran binît. Aliyek din ji hikmê Suto Axa li ser nêzîkî sed gundan hikim dikir. Hersal 'deh yêk'a gundiyan dida xirkirin. Teto û Temo birazayên Mikail Axa bun. Axayê Rêkaniyan ê mezin Mikaîl Axa bû. Lê belê êdî axatî Mikail Axa ji bo herdû biraziyên xwe dihêla. Gava ev xeber çû guhê Teto û Temo, hundirê van kerb we tejî bû. Çi ku bo axayekê şerma herî mezin ew e ku êlatê wî/gundîyên wî wergiyê bide axayek dî. Suto Axa çawa hikmê xwe dibe ser gundiyên Rêkaniyan? Teto sund xwar ku vê şermê li ser axayên Rêkaniyan rake. Heyamek derbas bû hate axaftin ku birayê Suto Axa Heyo, hatiye Îraqê û çend tiştên bi qîmet jî cem wî hene. Teto benda rojek wusa bû. Bi zû çend siwarên xwe amade kirin û çû li ser rêya Heyo. Daxvaza Teto ev bû ku çend malê karvanê dest bistînît û malê Suto talan biket. Dema Heyo tê nevalekê Teto dike gazî Heyo: "Heyoo çend malê barkiriyî li karvanê hebî hemiyê bihêle û here"

Heyo: "Ev kê ye mirina xwe digeriyêt û hez dike karvanê Suto Axa talan bike? Velle ez xwe derziyekê ji nahêlim bo te û nadim te"

Kerbê Teto vedibe û Heyo dihêlî bin gulebaranê. Heyo û çend karvan dî, cih de dimirin. Teto çend karvanên Suto bi hemû barên kavranan we talan dike. Xencerên, zêr u zîv ve hatî çêkirin jî hilgirtin, paşê jî zivirî Rêkanê. Gorî xwe bi kêf manê diçe û mizgînîya dide Mikaîl Axa.

Mikail Axa dibêje Teto: "Aha te nehe mala me xerap kir. Tu çawa diçî karvanê Suto Axa, talan dike. Ev bûyere dê bibe dumahîka jiyana me. Te çima mala me xerap kir Teto! Em dê niha çi bikin? Dê çine kîrê? Em dê çawa bin zilma Suto xwe xelas bikin? Suto heta kesek me nemîne dê tola xwe weke"

Ji bo tola birayê xwe sund dixwe. Xwe ra dibêje: "Ew kesê nezan û mirina xwe xwestiyî kê ye? Ma nizane ku ew kesê birayê min bikujî ez nahêlim sax bimîne li ser dinyayê?" Paşê bêhnekê xwe ra difikirît û gazî kasidê xwe dike: "Here cem ew kesê xencer çêkirî. Bêjê, hanê bo te sed zêrê reşad. Heta saleke dîtir weki xencerên bo Suto Axa çêkirî ji bo çi kesek dî neçêke."

Armanca Suto ev bu ku nabenda salekê da xenceran peyda bike. Ka cem kê ye? An jî destê kê da dê peyda bike? Bi rastî istixbarata Suto gelek xurt bû. Meh ser mehan derbaz bûn. Rojekê xeberek hate bo Suto Axa. Gorî xeberê, birayê wî Heyo, axayê Rêkaniyan; bi destê Teto we hatiye kuştin. Xencer cem Teto û kesên malbata wî hatine dîtin. Suto sund dixwe u dibêjî ewan kesek me kuşt, lê belê ezê du kesên mezinên wan bikujim. Da ku bizanin wê herêmê bilî hikmê Suto teyr jî nafirî."

Lê belê wê tolê dê çawa hilgirî? Suto dikeve nav fikirên kûr. Dumahikê dibêjî: "Ez dê keça xwe bidim Teto û xizmaniyê gel rêkaniyan bikem da Teto û Temo nêzîk me bibin. Paşra jî dema min derfetek dî, ez wan herdu birayan dê bikujim û xwîna birayê xwe erd rakem."

Belê, plana Suto ev bû. Nabeynekê xeber rêkire nav Rêkaniyan: "Suto hez dike gel Rêkaniyan bibe xizm." Bi rasti Rêkaniyan dema ew xebere bi devê qasidê Suto guhdar kirin, şaş man. lê belê aliyekê da jî pê xizmaniya Suto axa hikmê van dê hêj firehtir biba. Mikail Axa teklifa Sûto dumahikê qebûl kir. Çi ku ew xizmani ye dema bûyera Heyo bête zanîn belku bibe sebebê aştiyê. Bi rasti Mikail Axa û Temo wisa aliyê baş we difikirîn. Haj plan u telikên Suto Axa nebûn. Kurê Heyo bo qirara mamê xwe Sûto bêdil bû. Haj planên Suto nebû. Bi kerb manê gote mamê xwe: "Ew kesên ku babê min kuştî çawa dê bibin xizmê me? Tu çawa tiştek wusa dike. Xîna bavê min erd dihêlî?"

Suto plana xwe dibêje birazavayê xwe: "Tu qet meraqê neke. Ez Sutoyê Selim, qet xîna birayê xwe dihêlim erd? Tu bêhin fireh be. wext dê bê devran dê zivirî û ez dê tolê wergirim"

Belê rastî jî Suto bêhin fireh hereket dikir. Keça xwe Helîma da Teto û gel Rêkaniyan bû xizm. Pê xizmaniyê, gelê Rêkaniyan gelek kêf xweş bibûn. Çi ku armanca Suto kifş nekiribûn. Sal derbaz bû. Suto bo keça xwe Helîmayê hinek jahr rêkir da ku Teto bikuje. Lê belê hindî vext çuyî bi rastî Helîma'yê zêdetir hej Teto dikir. Dilê wê nedikarî Teto bikuje. Sûto zanî ku Helîma nikarî Teto bikuje. Ji ber wê, çareseriyek dî fikirî. Çend sal derbas bûn. Sûto xeber rêkire bo Teto û Temo. Gote wan bihara me isal xweş derbaz dibe. Zomên me isal gelek xweş in. Hun dikarin bi temamî celebên xwe we bên û bine mêvanê min li Mêrgezerê."

Teto û Temo ji bo teklîfa mêvandariya Suto Axa kêfxweş bun. Aliyekê jî derangu û zomên Rêkaniyan wê salê qet baş şîn nebibûn. Ew teklîf wê aliyê we jî bo herdu birayan baş hat. Lê belê dema gazîkirina Suto çû guhê Helîmayê, Helîma bi tirs we ket. Helîmayê gote mêrê xwe Teto: "Neçe, bavê min nîyet e ku dê te bikuje. Berî niha jî jahr dabu min, da ku ez te bikujim. Lê belê min nikarî te bikujim. Çi ku tu malxê min î. Tu bi xwedê ke neçe mêvandariya bavê min."

Teto piştî çend salên xizmaniyê, baver Halimayê nake û dibêjê: "Eve çend sal derbaz bûn ku em xizmên hevûdin ne. Çi bibe bila bibe ez dê biçime mêvandariyê."

Teto û Temo nêzîkî pêncî siwarên çekdar we xwe amade kirin, çend seetan rê çûn û hatin nêzîk gundê Sûto, qesra Nêrwe. Suto dema zanî ku mêvan nêzîk Nêrwe we hatin. Çu pêşiya Teto û Temo, xêrhatina wan kir. Gote wan: "Hûn xêr hatin, ser seran û ser çavan hatin. Ez gelek kêf xweş bum ku we mêvandariya min qebul kir. Eger hûn bixwazin em işev li wir (Nêrve ) qesra min bibin mêvanê min. Em subê zu rabin bihevra kevin rêkê ca biçin zoma Mêrgezerê."

Teto û Temo jî got: "Em jî kêfxweş bûn ku we em gazî kirin. Inşallah dê ji bo me hemu kesan

Xêr hatin xelas bû. Çûn diwana qersrê runiştin û ser revşa êlat axaftin. Xwarina xwe xarin û çend qehve jî li ser vexwarin. Vext borî. Sûto kire gazî xulamên xwe: "Herin çend siwarên gel Teto û Temo hatî, her malê pêncan Bikin mêvan. Temo û Teto dê qesra min da ciheke taybeyt dê razên. Dê zû bin mêvanên min gîro nekin."

Paşê jî wekî Suto xwestî her kesek çu ser cihê xwe da ku razên. Suto xatra xwe mêvanên xwe xwast û çû odeka xwe ya razanê. Lê belê, ma benda nivistina Temo û Teto. Wext borî... jiyan borî... Bu nîva şevê. Dem hat. Dema mirinê hat. Dema xeva mirinê hat. Suto çend mêrkujên xwe, bêdeng rêkirine odeka herdu birayan. Piştî bêdengiyeke kurt, qêrîna Temo û Teto, nabenda xev û bêxeviyê da bilind bû ber esîman. Jiyan davî bû... herdû cendek bin xencerên bêvijdanan mîna elegê lêhatin. Êdî cendek hêdî hêdî sar bûn... çîroka Temo û Teto, dibe çîroka xeva mirinê, nav gelê kurd. Heta niha jî li ser vê buyerê çend bend tên gotin...



# Deq:

## Kevneşopiya qedîm

Ne hêsan e ku meriv di derhepê dîroka tattooyê de tiştekî bibêje. Ji ber ku dîroka wê ixtimal heye ku heya 10 hezar sal jî biçe. Li gor hin çavkaniyan jî dîroka wê bi qasî 500 hezar sal tê bi zimankirin. Tattoyên ku li ser mûmyayên Misirê hatine neqişkirin, zelal bûye ku dîroka wan digihîje salên 2000'ên eriya Îsa. Ew deq bi boyaxa qamiş û çilo hatiye çêkirin. Dibe ku meriv di derheqê deqên yekem de gelek tiştan bibêje. Lê li Mezopotmya ya ku kurd û ereb bi deh hezaran salin lê dijîn ew kevneşopî hebûye û hê jî he ye.

Neqşên ku mirov li bedena xwe dineqîşîne li her dereke bi navên cûda tên bi navkirin. deq, daq, vesm, dovûn, dakî, daqî. Di şikeftan de, li ser dîwaran û li goristanan de jî ew nîgar hene. Bi taybetî di goristanan de meriv rastî van nîgaran tê. Di deqan de şopa bawereyên; şamanîzm, paganîzm, anîmîzm, sabiyî, taoîzm, bûdîzm, manîhaîzm û zerdeştiyê hene.

Bo çêkirina deqan; Di serî de boyaxa deqan tê amadekirin. Madeya xam ya deqê bi tevlîbûna şîrê jineke ku nû welidî ye (ku keç anîbe dinê) kezebeke sewalan, teniya lampê û hin tiştên din di nava hev de têne histiran. Beriya deq li çêr were neqşandin şeklê wê tê çêkirin. Dû re bi sê, pênç, heft û neh derziyan şiklê ku hatiye xêzkirin bi seatan tê qulkirin. Serê van derziyan derbasî bin çerm dibe. Hefteyekî cihê ku bi derziyan hatî qulkirin qalik digre. Ku qalik baş bû û hat rakirin tişta ku em jê re dibêjin deq, derdikeve holê.

Bi teybetî li Kurdistanê deqên ku piranî bi rengê şîn hatine neqişandin tê wateya nîşandana bedewî, esalet û girêdana bi eşîrti re. 50 sal berê li Reha'yê dema ku gedeyekî bixwesta ku bi keçekê re bizewicê, neçar bû ku pereyên deqê jê re bişîne û jê dixwast ku li canê xwe deqekê bineqşîne. Di dema deq çêkirinê de êşek sivik tê hîskirin. Ev êşek xweş e. Ev êş paşê xweşiyekê tevlî bedenê dike û wateyên nû dide. Yên ku deqekê li canê xwe bineqşîne bextewar e bo tiştên di xeyalên xwe de û weke ku esalet li gewdeyê xwe neqişandibe.

Herkes nikare hostetiya deq neqişandinê bike. Divê xwediyê hin taybetiyanbe. Divê ev, kesek jinebî nebe. Divê keseke ku li ser hişên xwe be, zarokên mirî newelidandîbe an jî qet zarokên wê nemiribin. Tê bawerkirin ku qedera xirap ya kesên ku deqan çêdike, derbasî laşê ku dineqişîne jî dibe. Kesên ku deq li laşê xwe dineqişîne dixwaze ku deqvan bi tecrûbe be.

Carina mêran jî deq dineqişandin û ji mêrên ku deqan çêdikin re "deqaq", ji jinan re "deqabe" tê gotin. Mêrên ku li canê xwe deq çêdikin re "medkuk", ji jinan re "medkuke" tê gotin. Deqên jin û mêran cihê ne. Jin bo zerafet û bedewiyê, mêr ji bo hêzdarî û şiyanê çêdikin. Cihê ku mêr an jî jin deqan dineqişînin duguhere. Jin bi piranî navbera herdû biriyan de, li hinark û ser poz, li ser çene û derdora gerdenê, li ser pêçiyên dest û lingan, li ser zik û qorixê, li piştê û li enîşka lingan hetanî kabokê û ji bin çenê hetanî serê pêsîran deqan dineqişînin. Mêr bi piranî li pişta destê xwe û li eniya xwe deqan çêdikin.

Motîf û figurên ku jinan li gewdeyê xwe kola ne tijî şîfre û sembol in. Li gor lêkolînêran şiklên deqan bi temamî digihîjin pîrozkirina xwedawenda ku dayîka hemû xwedawenda ne. Çavkaniya jiyanê, zayendiya dayikê, tol û bereket, astên geşbûna zarokê di hundirê dayika xwe de û mirinê tevsîr dikin ew sîmge. Dema ku şiklê roj û hêyvê li eniya xwe dineqişînin jî ew tê nîşandana wateya ku dixwazin bibêjin 'em bedew in'. Deqên şiklê pezkoviyan tê wate ya ku ew jin xwe dişibînê pezkovî yê. Deqên ku li berzendkê têne çêkirin û wek bazingekî lê dişide jî tê wate ya dolsozî û sadiqbûnê. Deqên ku li tilêyên lingan wek şe an jî meqesê têne neqişandin jî têne mane ya daxwaza ku qismet vebe. Carina jî meriv dibîne ku mêran li xilfikên xwe, pişta destên xwe hin dew neqişandine. Bi tîpên erebî nav an jî hin îbare, şêr, mar û hîv jî sembolên ku mêr li gewdeyê xwe dineqişîn in. Carna jî li xilfikên xwe şiklên wek xal jî dineqişînin. Jin deqan bi taybetî li ser çeneyên xwe, bin çeneye, berzendkên lingan, stû, sîng û li ser pişta destên xwe dineqişînin. Mêr jî zêdetir, li ser pozê xwe, orta eniyê, li ser pişta destan, berzendkên destan, li milên xwe dineqişînin. Hin jin jî wek tiştekî taybet şiklê xezalan li gewdeyê xwe dineqişînin. Ev ji bin çeneyê test pê dike u heya serê memikan jî dom dike. Hin jinên ku deqên ku ji çokên xwe heyanî berzendkên lingan, yan jî ji navê hin şiklan dineqişînin jî hene.



## Wateya hin deqan

Motîfa hevê: Ew tê wate ya çavkaniya jiyanê û daxwaza jiyanek bê dawî nîşan dide. Motîfa Xezalê: Ew şiklê deqan ji bin çeneyê destpê dike, ji stû dadikeve ser herdû pêsîran û şiklê xezalê ye. Motîfa şe û nêynikê: Jin wê motîfê li ser pişta destên xwe û li berzendkên lingan dineqişînin ku ew mînanî şiklê şe an jî neynikê ye. Şiklê xeleqê: Di nava desenên deqan de motîfên xeleqê ku li berzendkên lingan têne neqişandin cihekî girîng digirin. Motîfa xaçê: Her çiqas ku xeç wek sembolek xiristiyaniyê bê zanîn jî, dîroka wê ji xiristiyinayê kevntir e. Bi rêya rengên xwe tê wateya nîşandan hêlê ya biyom, herwekîdin tê wateya têk birina nêrîn û awirên bêxêr. Motîfa rojê: Ew motif ku zêdetir li eniya mêran rastî mirov tê û 9 xalan tê neqişandin tê wateya ku kesê ku ew neqş li gewdeyê xwê kiriye, biapil, zane û aqlê sêlim e. Motîfên roj û heyvê ku pir rastî mirov tên jî tên wate ya bê sînoriya jiyanê. Motîfa dara jiyanê: Ew motif dema ku ji bo jinan ji stû destpê bike û hetanî pêsîran dakeve çavkaniya xwe ji xwedawenda dayîk digire.

**Foto û Nivîs: Paşa İMREK**

# Gaze :
# Lêpirsîna li ser bîranineke parçebûyî

Marc-Olivier BHERER

Wênegerê Emerîkî Joe Sacco li Gaze'yê bi karê jimartina zehmetiyên jiyana rojane ve eleqadar dibe. Ev jimartin bi hejmara miriyan, hejmara roketên ku berbi Îsraîl'ê ve hatine avêtin, hejmara bombeyên ku li ser gelê Gaze'yê hatine reşandin, hejmara avahiyên ku hatine hilweşandin û hejmara girseyên ku ji aliyê dagirkeran ve hatine koçberkirin ve eleqedar e. Sacco hewldide ku vê çîroka miriyan bide tinekirin û bîranîneke nû bide çêkirin. Di sala 2001'an de, di hevpeyvîneke bi govara amerîkî ya Harpers'ê de ew jêrnûsekî ji raporta Neteweyên Yekgirtî tîne bîra xwe. Di wê jêrnûsê de ew agahiyên di derbarê komkujiya du sed û heftê û penc (275) sivîlên filistînî, li Khan Younis, û her wiha ya bi dehan kesên din ku li Rafah'ê, herdû bajarên Şerîda Gaze'yê ne, ku ji aliyê leşkerên Israîlî ve pêkhatî dibîne. Ji wê demê bi şûnve Sacco biryara pêkanîna vê lêpirsîne dide.

Di wêneçîroka mezin a naskirî de Joe Sacco bi cesaret hewldide ku vê çîrokê baştir deyne ser dikeke wisa ya tiyatroya operasyonê. Ew di nava kareke bizehmet de ye ku filistîniyan bibîne da ku ew bikaribin ji komkujiya ku pencî (50) sal berê pêkhatî re şahîdî bikin. Di dema pêkanîna vî karî de ew bi pêdiviyên filistîniyên ku bikaribin dagirkeriyê bilêv bikin re jî rûbirû dimîne. Her wiha ew zehmetiyên ji bo parastina bîranînên neteweyî yên filistîniyan jî baştir dibîne. Carna ew rastî hin şahîdiyên ku bûyeran tevlihev dikin û jinûhve çêkirinê zehmetir dikin jî tê. Çêkirina senaryoyê, ya di wêneçîrokê de bi text û daran hatiye neqişkirin, serketî ye. Lêpirsîna ku ji aliyê Sacco ve hatiye meşandin dilê mirovan diêşîne û ew bi awayeke xwendina dîrokeke dilbiêş, ku di navbera paşeroj û pêşerojê de diyalogekê dide xûyakirin, tê xwendin.







**(Gaze 1956, Ji Derveyê Dîrokê, ya Joe Sacco, ji aliyê Sidonie Van Dries ve ji îngilîzî hatiye wergerandin, Futuropolis, Paris, 2010, 400 rûpel)**




# Rêya Bêveger bi kurdî ye

'Rêya Bêveger', kitêba nivîskar Hasan Bildirici ku heya niha gelek pirtûkên ku di warê bûyer û trajediyên ku li Kurdistanê qewimîne vedibêjin nivîsîne, ji aliyê Wêşanxaneya Lîs ve bi kurdî hat çapkirin.

Pirtûka ku beriya demekê bi tirkî hatibû çapkirin û yekem pirtûka rêze-pitûkekê bû ji aliyê Salih Agir Qoserî ve li kurdî hat vegerandin û ji aliyê Lîs'ê ve hat çapkirin. Di pirtûka ku jiyan, têkoşîn, pêvçûn, atmosfera psîkolojîk, siyasî,civakî ya salên 90-94'an bi rêya komek gerîlayên PKK dixe naveroka xwe, bi temamî li ser bûyerên ku qewimîne disekine. Rêze-pirtûk bi 'Rêya Bêveger Sarya' û 'Geri Çekilme' dewam dike.

Mijara pirtûka ku jiyana komek gerilayên ku li aliyê Texterewanê (Tatvan) bi gundî, civaka bajêr û bi hev re di têkiliyek çawa de ne li ber çavên xwînêran radixe, wiha ye:

Dema ku Rojda ya ku li Stembolê li zankoyê dixwîne ji ber nexweşîyê hinekî navbirrîyê dide xwendinê û tê mala xwe ya li Tetwanê, bi rê de rastî termê gerîlayeke jin tê. Piştî vê rasthatinê Rojda ji alîyê leşkeran ve tê şopandin, li ber şikenceyê di îfadeyan re derbas dibe, jîyana wê ji ber bûyerên bênavbirrî û awarte hildiweşe.

Dîsa rojeke zivistanê, ku berf dibare, pêrgî wan gerîlayan tê, yên ku wê dişopînin. Gerîla wê bi xwe re dibin çîyê, êdî jîyanek dest pê dike, ku kevir û dar li ber îdare nakin. Rojda govanîyê li neçarî, evînên nepenî, xwekuştinê û hêza berxwedana mirovahîyê dike. Di heman demê de li bajaran gelê welatparêz tê kuştin. Mirovên ku Rojda ji wan hez dike bi rêbazên hovane têne kuştin.

"Rêya Bêveger" bûyerên ku di salên 1990'î de li ser erdnîgara Kurdan pêk tên bi vegotineke balkêş dibêje.

Adil HARMANCI

# Dengbêjên jin yên Serhedî gihîştin hev

Di salên dawîn de li gelek bajarên Kurdistanê saziyên ku dengbêj lê digihêjin hev hatin vekirin. Li Amed, Batman û gelek bajarên din wek komele ew sazî xebatên xwe didomînin. Li Wanê jî komeleyek beriya çend salan hat vekirin ku xwedî taybetmendiyekê ye. Da ku ew ji aliyê dengbêjên jin ve hat vekirin û tenê jinên dengbêj li wir xebatên xwe dikin. Wek tê zanîn dengbêjî di warê çandê de xwedî rolekî bingehîn e. Ji ber ku li ser zindî mayîna zimanê kurdî jî bandora dengbêjiyê bê hempa ye, xebatên ku li wan saziyan têne kirin bi qîmeta zêr in. Komeleya Jinên Dengbêj ya li Wanê jî bi nêzikahiyek ciddî û karekî profesyonelî balê dikşîne.

Komeleya ku ji aliyê 15 jinên dengbêj ve hat avakirin, tevî hemû tengasî û bê derfetiyan, bi vekirina qursan, organîzekirina şevbiherkan, şahî û bernameyên xwe wateya bê derfetiyê têk dibe. Li komeleyê xebatên berhevkirinê, lêkolînkirinê, perwerdekirin û dokumantasyonê jî têne kirin. Herwiha xebateke wan ya balkêş jî koroya zarokan e ku heya niha li gelek welatan hatine vexwendin û li gelek bajarên Kurdistan û Tirkiye jî beşdarî bernameyan bûne.

Di dîroka dengbêjiyê de yekem care ku li Wanê Komeleya Jinên Dengbêj hat avakirin. Bi pêşengiya dengê navdar dengbêj Gazîn (Raziye Kızıl) û bi piştgiriya 15 jinên kurd yên herêma Serhedê di sala 2012'an de komele hat avakirin. Komele ji ber ku seranser bi biryar û xebata jinan li ser xwe ye, bo herêma Serehedê wek cihekî navendî ye.

Komeleya ku hem ji bo jinên dengbêj wek cihekî ku bêne ba hev û bi hev re karên kolektif bikin û hem jî bo pêşxistina muzîka dengbêjiyê ya bi rêya enstrumanan, cihekî balkêş e. Piştî komele hat avakirin, endamên komeleyê di gelek bernamê û şahiyan de cîh girtin û komele ji bo gel bû cihekî qîmet giran. Di nava xebatên komeleyê de helbet qursên enstrûmanan jî hene. Komele niha amadekariya ku di demek kin de di derbarê erbane, bilûr, vîyolîn, saz û hwd. qursa veke. Wekî din jî ji bo fêrkirina zimanê kurdî, êngilizî, û farisî jî li komeleyê qurs têne vekirin.

### Astengiyên piştî erdhejê

Dema ku êdî komeleyê bi rêk û pêk dest bi xebatê xwe kir, di salvegera vekirina komelê de li Wanê du erdhejên mezin qewimîn. Avahiya komelêyê ku li Yüzüncü Yılê cih digre ji ber erdhejê xesarek mezin dît û niha nayê bikaraîn. Gelek estûrûman û melzemeyê wan jî zirar dît. Endamên komeleyê neçarbûn ku demek dirêj xebatên xwe di konan de berdewamkin. Ji ber ku hin rêvebir jî ji Wanê çûn di warê hejmarê de jî pirsgirêkên wan derketin.

Komeleya Jinên Dengbêj piştî salekê dîsa hat vekirin û tevî hemû tengasî û kêmasiyan xebatên xwe dan destpêkirin. Komeleya ku vegeriya avahiya xwe ya nû, pişt re kongreya xwe li dar xist u bi rêveberiya nû xebatên xwe dan destpêkirin. Valahiya rêveberên ku çûbûn hat tijekirin. Di vê pêvajoyê de gelek endamên komeleyê jî çêbûn û niha nêzikî 100 jinên dengbêj endamên komeleyê ne.

### Qoro ya zarokan

Komeleya ku li navenda bajêr û li navenda navçeyan gel kes wek endam qeyd kir û di heman demê de di derbarê dengbêjiyê de agahî û meteryal berhevkir, û bi rêya van kesên ku dixwazin stranan bibêjin jî agahdar kir. Civan, zarok û pîrên ku di derbarê tengbêjiyê de xwedî qabîliyetê ne jî pêşwazî komeleyê têne kirin û ew jî beşdarî xabatan dibin. Bi vê minasebetê gelek şevbûhêrk heya neha hatin li dar xistin û rêze çalakî hatin çêkirin. Di van çalakiyan de hejmara zaroka zêdebû, ji ber wê jî "Koroya Dengbêjên Zarok " hat avakirin. Koro bo ku li Êrîvanê konserekê bide bi vexwandnameyeek teybet hat vexwandin.

Komele piştî ku hat avakirin cara yekem çû Herêma Kurdistanê jî û di meha gulanê de jî bi vexwandina Wezareta Çandê ya Ermenîstanê çû Êrîvanê. Çar dengbêjên ku di heyetê de cih digirtin piştî ku li vir konserek dan; li gundê ermenî, êzidî û kurda geriyan, lêkolînînên urf û edetên van gelan kirin.

Ji bo ayînê amedehiya konserê

Piştî ku endamên Komela Jinên Dengbêj li Ermenîstanê konser dan niha jî amedehiya konsereke ji bo ayîna li dêra Axtamarayê tê kirin dikin. Serokê Komeleya Jinên Dengbêj, Gazîn got ku di konsera meha kewçêrê de jî dengbêjekê bi navê Aşiq Leyla ji Ermenîstanê dê were û wê bi hev re konserekê pêk bînin.

Di derbarê Armanca xebatên komeleyê de Dengbêj Gazîn agahî da me û got ku li herêmê hejmara dengbêjên jin zêde ye lê ji ber ku eleqeya ku heq dikin nabînin nikarin xwe bigîjînin her kesî. Gazîn wiha domkir, "Armanca me ya sereke berdewamiya çanda dengbêjiyê ye. Lê di himan demê de armanceke din jî ew dengbêjên ku xwe veşartî ne da ku em wan jî ji cihê wan derxin. Jinên me yên li gundan dijîn, mesele bêrîvan kilamên xwe yên herî xweş dema mîhana didoşin dibêjin. Dema şîr dikelinin distirên an jî dema li ser kaniyê dicivin. Em difikirin ku gund bi gund bigerin û wan derxin, dokumenterên wan bikşînin. Dema em van xebatan bikin belkî hêlên veşartî yên dengbêjiyê jî derkevin holê û çanda xwe pêşve bixin. Me carek din dest bi xebatên xwe yên saz, bilûr, ney, erbane kir. Koroya me ya zarokon eleqeyek baş dibîne. Vexwandinên girîng ji wa re têne. Dê herin Êrîvanê jî. Civanên me li mûzîka pop gohdar dikin û divê em wan vegerînin ser çanda wan. Emê bi xebatên xwe têkevin pêşiya pişavtina le ser çandê. Em neçar in ku li hemberî vê têbikoşin. Dêngbêjî bingeha çanda me ye. Divê em liv ê xwedî derkevin. Saziyên din yên kurdan jî lazime ku piştgiriy xebatên bi vî rengî bikin."

### Dengbêja Emerîkî

Ji hêla din ve di van rojên dawîn de mêvanên Komeleya Jinên Dengbêj jî heye ku bixwe ji Emerîkayê ye û li wir bi navê Aoush Tamar Suni tê naskirin. Ew jî jineke muzîkhez û stranbêj e. Suni ku li Zanîngeha Kalîforniya'yê bêşa antropolojiye û li Wanê niha dersen muzîka û dersa zimanê kurdî distîne. Ew jî niha din ava xebatên komeleyê de cîh digire wek endamê saziyê.



# Populîzm çandê têk dibe

Bêzar BÊWAR

Li Tirkiye bi avakirina Navenda Çand a Mezopotamya'yê (NÇM), di destpêka salên 90'î pê ve hunera ku bi kurdî tê kirin, li navendekê gihêşt hev û di binê banekê de rêbazên ku bandora astengî û pişavtinê bê şikandin da ber xwe. Şano, muzîk, wêje, sinema û hwd, bêşên hunerê ku li vir bi rêbazên akademiyekê xebat li ser dihatin kirin bûn. Koma Gulên Xerzan jî komek muzîkê ku beriya NÇM'ê hatibû avakirin û ji destpêkê vir ve jî li wir xebatên xwe didomîne ye.

Kuma Gulên Xerzan bi albûma yekem ya bi navê 'Ji Bîr Nabin' di nava kurdên Bakûr de denge xwe gerandin. Pişt re 'Sonda Me' û 'Rûkena Min' bû geşbûna muzîka wan û demek dirêj stranên wê komê li ser zimanan bû. Niha jî albûmên ku Koma Gulên Xerzan afirandi ne, bi qelîteya xwe di dîroka muzîka kurdî de cihê xwe girt. Her çiqas ku niha hin endamên komê veqetiyabin jî, ew amadekariya albûma 4. dikin. Damezrînêrê komê Çiya, ji destpêka wan a muzîkê heta îro hin bîranîn û ramanên xwe bi me re parvekir.

***We di 89'an bi komek amatorî dest bi muzîkê kir û piştre jî hun wek kom beşdarî NÇM'ê bûn?***

Belê me li Kurdistanê, li Batmanê dest pê kir. Hin kes dibên lê 'me çavê xwe bi mûzîkê vekir', min çavê xwe bi erbanê vekir. Hin pismamên min hebûn li erbanê didan. Başûrî dibêjin def. Dema daweta birayê min yê mezin bû nehatin dawetê, min çû ji Derwêşa gundê ku cîranê mebûn defcî anîn. Bavê min wê rojê got divê tu êdî erbanê hîn bibî. Tepikek da destê min û got tu dê heya êvar li vê bidî. Min wisa kir. Min ji wê rojê pêva lê da. Ew pismamên min ku li erbanê didan gelek pisporbûn li herêma Xerzan. Min di deh, donzdeh saliya xwe de qîr dikir û li erbanê dida. Me di 88'an de koma xwe damezirand. Wê çaxê Rojda di komê de 7-8 salî bû. Wê demê herêma Xerzan oldarbûn; diya min, bavê min bi xwe jî nîv mela bûn. Ku digotin Hecî Evdilkerîm were an Hecî Mehmecan were bila Rojda dernekeve. Ewê bêjin keça filankesî derketiye kilama dibêje. Rojda xwîşka min e, min ew bi koteka anî.



***Xebatên komê dû re çawa dewam kir?***

Nêzîkî 85'a em hatin Stenbolê. Bi navê Husamettîn pismamekî min hebû, li tembûrê dida. Min navê wî danî Sîpan, yê Rojda jî min danî û min yê xwe jî kir Çiya. Me komek ava kir. Derdorê 88'an ez çûm eskeriyê. Ku ez vegeriyam em bi xwe diçûn bernama. Em di nav gel de bûn. Di 92'an de me cihê xwe li NÇM girt. Berhema "Ji Bîr Nabim" wê çaxê derket. Ya duyemîn "Sonda Me" û ya sisiya "Rûkena Min." Niha jî ya çaremîn wê derkeve. Koma Gulên Xerzan berdewam e. 7-8 sal berê Rojda cihê bû lê di eynî saziyê de ye. Dîsa jî em bi hev re diçin bernameyan, ku li ser navê Gûlên Xerzan tiştek çêbe Rojda nabêje na.

***Di dema şer de hin komên wek Gulên Xerzan, Koma Amed, Koma Azad mûzîkeke bi qelîte çêdikirin ku asta mûzîka kurdî ji wan diyar bû. Ew kom ji ber hin sedeman belavbûn. Piştî wê mûzîkek bi qelîte derneket. Bi te sedema wê çiye?***

Ez dikarim bibêjim ku hetanî salên 2000'a rola NÇM û rola van koman gelek bû. Kesî wê demê nediwêrî stranek bigota, kesî newêribû bigota ez kurd im. Ji ber wê jî bi saya rêxistinê hin tişt hatin ser hev. Wê demê di her tiştê me de, di eşqa me de bîr û baweriyek hebû. Tenê armanca me ku em bi dengê xwe stranan bibêjin. Ku şoreşa gel zêde bû, di hin cîhan de azadî çêbû. Roja ku em negirtana bin çavan û nekutana tunebû. Lê qelîteya mûzîka kurdî gelek baş bû. Me xwe bi xwe perwerde dikir. Wê demê hin stranên veşartî hebûn, me rihê stranên veşartî dida. Ku meriv binêre sê berhemên Gulên Xerzan hene û ez îdia dikim ku her kes her tiştê xwe dikare di van de bibîne. Kî bihata NÇM'ê hema ew dixistin nava komekê ku dengê wan jî tunebû. Stranek digotin, me digot temam e. Çima wê demê stranên baş derketin, mûzîka ku bi ruhê kurdî ve girêdayîbû dihat çêkirin? Hin stranên li gor ruhê wê demê hatin gotin. Lê niha qelebalixek heye. Ku tu îro dinêrî li bajarekî wek Wanê 40-50 komên muzîkê hene. . Ku tu bêjî mûzîka kurdî, nikarin du heb peyv bînin cem hev. Bê guman ya baş jî heye. Xweziya NÇM bikaribûya hemû biparasta, hemû birêxistin bikira. Lê ku însanên ji bo berjewendiyên xwe bixebitin hebin tu çi jî bikî nayên. Me û komên din ji helbet muzîk di nava van şertan û wekî din jî di nava mercên giran yên şer de muzîk çêdikir. Divê meriv li xwe binêre. Ew dibêjin em hunermend in, em jî dibêjin em karkerin û em dixwazin bo vê civakê tiştên baş bikin. Berê me berhemek çêdikir dida yekî digot ka ji me re serarast bike lê niha em bixwe çêdikin. Ji ber ku li hemu deran komên mûzîkê hene û piraniya van jî bê qelîte ne em jî carina dikevin tengasiyê. Divê li hember hunermendan hinekî qîmet hebe. Wekî din jî niha çêkirina muzîkê hêsan bûye. Herkes dikarê li mala xwe albûmekî amade bike. Berê em li ser stranekê 20 rojan dixebitîn lê niha di seatekê de diqede. Ew tişt jî helbet dibin sedema daketina qelîteyê.



***Di demên berê de (wek salên 90'î) hunermendan pêşenkti ji civakê re dikir lê niha bêhtir diçin deweta. Berê ji bo şoreşê lê niha ji bo kêfê gel docoşînin. Ya din jî meseleya dawetan e. Hunermendek biçe dawetan û filan nabe sedema ji qelîteyê dûrketinê?***

Ez dikarim wiha bibêjim; li ku derê meş hebe, civîn hebe ez bi xwe diçim. Di hilbijartinan de seferberî çê dibe em mehekê diçin Kurdistanê. Ku em ji civakê dûr bimînin mane ya tiştekî namîne. Dayîkên Şemiyê va ye li vir in. Evên ku dibêjin em hunermend in û hwd tên van derdoran dixwin, vedixwin lê carekê seriyekî li wan dayîkan nadin. Kêmasiyên me jî hene helbet. Derdê me tenê meş û çalakî nin in. Rast e em diçin meşa, diçin qonferansa, diçin civînan, lê wekî din jî meseleyên ku em pê re mijûl dibin zêde ne. Hin kesên ku dibêjin em hunermendê kurd in bi xwedê rojekê nayên daxuyaniyek çapameniyê. Roboskî ku ji bo kurda ewqas girîng e nehatine wir jî. Armanca wan ne xilasbûna vî gelî ye, tenê ji bo hin berjewendiyên xwe tiştina dikin.

**Wekî we vegot barê hunermendên NÇM'ê giran e. Ev ji bo ku hunermend bikaribe li ser hunera xwe baştir bixebite nabe astengî?**

Bi rastî ne astengî ye. Carina em ji xwe re dikin bahane. Divê hûnermend vê fam bike ku tu ji bo çi hûnerê dikî? Berpirsiyariya xwe tînî cîh an na. Tenê bi stranekê nabe. Ku hunermendek derket ser dikê berê xwe zivirand û pişta xwe da gel ev nişane ya pişavtinê ye. Ew zirarê dide mûzîkê jî, zirarê dide xwe jî. Hin kes jî hene tenê siloganan diavêjin, bê wan silogana du peyvan nizanin. Di stranên xwe de yan gerîla yan jî pêşmergeyan û yan jî gotina 'Serok Apo' dikin stran. Tu bixwazî bo Serok stranan çêbikî, bila tiştekî baş be. Carekê em li Amedê çûn qonserekê û ji min re gotin tu strana Rûvî nebêje. Çima? Gotin ku tu di vê staranê de sîstema dewletê rexne dikî. De were...